

9 بەغدا و هەولێر

لەسەر فیلمیش ڕێکناکەون

Kurdjantin

Tango bi kurdî hîn xweştir e...

9



Hejmar / Nr. 125
08 Kanûn / Dezember 2011

# Rûdaw

ÇAPA EWROPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

Deutschland 1,50 Euro | Österreich 1,50 | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

# Zaxoyê rihê Barzanî êşand

Bûyerên ku îna borî (02.12.2011) li bajarê Zaxoyê bi şewitandina çendîn navendên mesajê û dikanên firotina alkolê ji aliyê ciwanên derdorê Yekgirtûya Îslamî dest pê kirin û bi êriş û şewitandinê buro û navendên heman partiyê bi encam bûn, pirsa toleransa olî û siyasî dîsa xist rojeva siyasî a Herêma Kurdistanê.

Bûyerên ku ji Zaxoyê derbasî çendîn bajarên din li Behdînanê bûn, Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî jî xist tevgerê û bi dilgiraniyek mezin Mesûd Barzanî gazinc ji xelk û berpirsên Zaxoyê kirin û got: “Min di 50 saliya PDKê de got Zaxo rihê mine, lê we ew rih gellekî êşand.

3 »



Wêneyê ku şerê Viyetnamê rawestand 10 »

## Daxwaza Kurdan li Sûriyê federalî ye!

Tevlî hewldanên Yekîtiya Dewletên Ereb û sozên rejîma Esad yên bidawîanîna tundiyê li hemberî xwepêşanderan, rojane bi dehan mirov li Sûriyê tên kuştin. Li aliyên din hewldanên yekhelwestiyê yên partiyên kurdî yên Rojavayê Kurdistanê jî zêde dibin û van rojan hevdîtinên Civata Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê ligel aliyên erebî û Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî pêk hatin. Di hevpeyvîneke ligel Rûdawê de, Sekreterê Partiya Yekîtî ya Kurd li Sûriyê, Îsmail Heme, diyar kir ku êdî daxwaza Kurdan diyar e û Kurd li Sûriyê daxwaza federaliyê dikin!

9

## Bavekî keça xwe ya 13 salî kuşt û reviya

Li nêzîkî bajarê Hannover, li bakurê Almanyayê, li ser banga Saziya Parastina Ciwanan (Jugendamt) Kurdekî 35 salî çû hevdîtina keça xwe ya 13 salî, ya ku ji ber pirsgirêkên malbatî beriya şeş mehan ji malê reviyabû. Armanc ew bû ku bav û keç dîsa li hevdu werin. Lê piştî ku keç bi vegera malê razî nebû, bavê li pêş çavê hevjîna xwe bi demanceyê li keça xwe teqand û ew kuşt û reviya. Kurdê 35 salî 2008ê ligel malbata xwe ji Başûrê Kurdistanê hatibûn Almanyayê.

2

Sefereke bê perê bo Kurdistanê

Kupon 125

5 rojnameyan bikire û biletekê qezenc bike

Nav û navnîşana we:..............................

..............................

Telefona we: ..............................



5 kuponên ji hejmarên cûda yên Rûdawê bibire û ji vê navnîşanê re bişîne:

Rûdaw Media GmbH
- Tîrûpişk -
Gutenbergstr 63 a
50823 Köln / Almanya

Nav, navnîşan û telefona xwe ji bîr nekin

Bi sponsoriya City Tower (Hewlêr)

Parêzer Uzun

Buroya Parêzeriyê

Em li seranserê Almanyayê di xizmeta we de ne

Agahiyên zêdetir ▶7

Reklam





# Keça xwe ya 13 salî kuşt û reviya

» NDR: Beriya kuştina keçikê, bavê xwe derbarê ceza de haydar kiribû

**Koln (Rûdaw) –** Esas daxwaz ew bû ku bav û keça xwe ya 13 salî nêzîkî hev bibin û li hev werin, lê piştî hevdîtinê bavê bi demançeyê li keça xwe ya salî teqand û ew kuşt û reviya.

Duşema borî (05.12.2011) li gundekî nêzîkî bajarê Hannoverê li bakurê Almanyayê bûyerek tradejîk rû da. Li pêş çavê dayîka wê û şahidên din, Kurdekî 35 salî li keça xwe ya 13 salî çend caran teqand û reviya. Heta niha jî bav xwe radest nekiriye û winda ye. Polîsên almanî bi helikopteran li derdora gund li bav geriyan. Derbarê sedemên vê kiryarê, polîsên almanî diyar kirin ku wisa dixuyê ku sedem pirsgirêkên malbatî ne.

Kurdê 35 salî ligel malbata xwe 2008ê ji Başûrê Kurdistanê hatine Almanyayê û li gundê Nienburgê bi cih bûye. Sê xuşk û birayên keçika kuştî hene û ew mezina wan bû. Malbata ku Kurdên êzîdî ne û ji Başûrê Kurdistanê ne, ji sala 2008ê ve li gundê Nienburgê dijî. Ji ber pirsgirêkên di nava malbatê de, keçika kuştî beriya şeş mehan ji malê reviyabû û ew ji aliyê Daîreya Parastina Ciwanan (Jugendamt) dihat piştgirkirin û keçik di maleke taybet de dihat xwedî kirin. "Me dixwest ku bi malbatê re bikevin pêwendiyê, perspektîvekê ji bo siberojê peyda bikin", Torsten Rotschke yê berpirsê Daîreya Parastina Ciwanan li Nienburgê diyar kir. Lê di danûstandinê de keçika 13 salî diyar kiriye ku ew êdî naxwaze vegere cem malbata xwe û vê yekê jî bav êşandiye.

Li gor Daîreya Parastina Ciwanan, buyer wiha pêk hatiye: Roja Duşemê bav û keç li avahiyeke Daîreya Parastina Ciwanan hevdu dibînin û diaxivin. Armanc ew bu ku herdu dîsa nêzîkî hevdu bibin û li hev werin. Berpirsekî Daîreya Parastina Ciwanan jî ligel bav û keçê bû. Hevdîtin piştî nîvro qediya û herdu ji avahiyê derketin. Dema ku keçikê xwest bikeve hundirê otomobîlek Daîreya Parastina Ciwanan, bavê keçikê bi temançeyekê çendîn caran li pêş çavê dayîka keçikê li keça xwe teqand û reviya. Çendîn gule li keçikê ketin û li cihê bûyerê jiyana xwe ji dest da.






**Li pêş avahiya Daîreya Parastina Zarokan, bavê 35 salî keça xwe ya 13 salî kuşt**

### Bavê beriya bûyerê xwe agahdar kiribû

Li gor polîsan heta niha bavê keçikê ti karekî neqanûnî nekiribû. Berpirsên Daîreya Parastina Ciwanan jî ragihandin ku ti nîşanên wê yekê nebûn ku hevdîtin wiha ji kontrolê derkeve û bûyerek bi vî rengi rû bide.

Li gor agahiyên televizyona almanî NDR, bavê keçikê beriya bûyerê ji parêzerekî dostê xwe pirsyara cezayê bûyerek wiha kiriye. NDR çavkaniya vê agahiyê kesên ji malbata kujer nîşan da. Lê ne polîs, ne jî dozgeriyê derbarê vê agahiyê de ti daxuyanî belav nekir.

Komela Êzîdiyan a Nienburgê bi tundî bûyer şermezar kir û daxuyand ku ti pêwendiya vê bûyerê bi ola Êzdatiyê tune û ev bûyereke trajîk a malbatî ye. Li Nienburgê û derdorê wê derdora 1000 Kurdên êzîdî dijîn.

# 2800 kiryarên "pakkirina namûsê" li hemberî jinan

**Koln (Rûdaw) -** Li gor lêkolîneke ku saziya parastina mafê jinan a kurdî-îranî (IKWRO) li Londonê eşkere kiriye, di sala borî de bi tevayî bêtirî 2800 tawanên "pakkirina namûsê" li Brîtanyayê pêk hatine.

Saziya navborî eşkere kiriye ku kiryarên tundiyê yên li dijî jinan bêtir li paytext Londonê pêk tên. Ji bo lêkolînê, saziya IKWRO ji 52 herêmên Brîtanyayê ji 39 herêman statîstîkên tawanan ji daîreyên polîsan wergirtin û di ber çav re derbas kirin. Li gor IKWRO, pirraniya tawanan di malbaten ji Asyayê, rojhilatê Ewropayê û ji Rojhilata Navîn pêk tên û piranî jinên wiha rastî şîdetê tên, yên ku hevalê wan heye, yên lesbiyen, yên ku destdirejiya wan hatiye kirin, anjî yên ku li dijî zewaca bê dil derketine.

Rêvebira IKWRO, Diana Nammi, di bernameyek radyoya BBC de ew yek rexne kir ku gellek malbat van tawanan înkar dikin, heta gelek tewankar weke qehraman tên dîtin, ji ber ku "namûsa malbatê pakkirine"

Yehya Silo




Rûdaw

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çîftçî

**Marketing û reklam**
Mansour Sedghi
m.sedghi@rave-online.org

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net / www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

© Hemû maf parastî ne

www.arsivakurd.org


Wêne: Rûdaw

## Piştî bûyerên li Zaxoyê
# 150 kes hatine girtin

**Mele Îsmailê tawanbarkirî:** Kesê ku li mizgeftê rabû ser piyan û doza nehiştinê sentera mesajê kir, endamê Yekgirtû bû

**Berpirsê Melbenda Yekgirtû li Zaxo:** Ev hemû plan bûn bo lêxistina bûroyên Yekgirtû

**Rêvebirê Asayişa Zaxoyê:** Şeva berî bûyerê televizyona Yekgirtû xelk dehif dida

**Hîvîdar Ehmed**
**û Ehmed Êmînkî** Zaxo

Melayê ku tê tawanbarkirin axaftinên wî bûne sedema destpêkirina bûyerên li Zaxoyê, niha jî dibeje ku "cihê mesajê yê ku jin mesajê li mêran bike, heram e." Çendîn xortên acizbûyî piştî axaftina vî meleyî ketin rê û êrîşî tena sentera mesaj, çend dikanên meyfiroşan, kasino û sê hotêlên tûrizmê li Zaxoyê kirin. Paşê bûyer derbasî Sêmêl û Duhok jî bûn, lê bûyer li vir jî ranewestiyan û şewitandina bûroyên Yekgirtû li devera Behdînan li pey vê hat.

### Mela Îsmaîl: Min got li şûna cihên mesajê, bila xelk mizgeftan ava bikin

Îmam û xutbebêjê Mizgefta Reşîd, Mele Îsmaîl Osman Sindî ku weke hilkerê agirê bûyerên Zaxoyê tê tawanbar kirin, red dike ku wî xelk han dabe bo şewitandina dikanên meyfirotinê û cihên mesajê. Mele Îsmaîl di daxuyaniyeke telefonî de bo Rûdawê got: "Ne tenê ez behsa cihê mesajê dikim. Hemû xelk behsa wê dike û dibe ez kesê dawî bim. Min di xutbeya xwe de tenê got ku li şûna avakirina cihên mesajê, bila xelk mizgeftan ava bike."

Hevwelatî Seîd Îbrahîmê ku wê rojê li pişt vî meleyî nimêja înê kiriye, bo Rûdaw got "dema mele behsa sentera mesajê kir, yek ji nimêjkeran rabû ser piyan û got madem tiştê wisa heram li Zaxo heye, bila xelk qebûl neke û wan cihan ji nav bibin". Mele Îsmaîl ev tişt piştrast kir û got ku kesek di nava xutbê de rabûye ser piyan, lê "min ji wî kesî re got eger tu niha biçî, berî ku nivêj biqede, nimêja te betale." Mele herwiha dibêje "kesê ku rabûye ser piyan endamekî Yekgirtûya Îslamî Kurdistan bû û xelk dehif da bo şewitandina sentera mesajê."

### Ji senterê mesajê destpêkirin

Mîna ku şahidan bo Rûdawê behskirin, piştî ku nimêja înê qediya, gellek xelk hatin ber deriyê sentera mesajê li Zaxoyê û êrîş birin ser û ew şewitandin. Lê ew bi vê yekê ranewestiyan û êrîşî çend dikanên meyfirotin û hotêl û cihên kosmetîka jinan jî kirin. Li gor Rêvebirê Geştûgozara Zaxoyê, Remezan Îsmail Mistefa, li nava Zaxoyê 20 dikanên meyfirotinê, 3 hotêl, senterekî mesajê û cihekî kosmetîkê hatin şewitandin." Bûyer piştre derbasî qeza Sêmêl û bajarê Duhokê jî bû û li qeza Sêmêlê çar dikanên meyfiroşiyê ji aliyê xwepêşanderan hatin şewitandin. Li bajarê Duhokê jî Sentera Nuhedra hat şewitandin, herwiha êvariya roja 3yê Kanûna 2011ê dikaneke meyfirotinê li Navçeya Zawîte hat şewitandin û polîsan 23 kes li ser şewitandina vê dikanê girtin. Roja 4ê mehê jî li Navçeya Dêrelok ya girêdayî qeza Amêdiyê (girêdayî Parêzgeha Duhokê) 4 dikanên meyfirotinê hatin şewitandin û polîsan çend kes li wir jî girtin.

### Hewldana bo êrîşbirina ser Metraniya Zaxo

Hin xwepêşanderan di dema bûyerên bajarê Zaxoyê de hewl dan êrîşî taxa Mehelê ya Xiristiyanan û Metraniya Zaxoyê bikin. Lê hin zêrevanên hin saziyên partîtî li wê taxê teqe ser wan de avêtin asîman û rê nedan ku xwepêşander êrîşî vê taxê û Metraniyê bikin. Berpirsên navçeyê roja paştir serdana Metraniya Zaxoyê kirin, bi mebesta piştrastkirina rûniştvanên vê taxê û Xiristiyanên Zaxoyê bi giştî derbarê parastina wan. Rûniştvanên Zaxoyê pêk tên ji Misilman, Xiristiyanên Aşûrî û Kildan, herwiha Ermen, Kurdên Êzîdî û hin malên Ereban jî lê hene.

### Yekgirtû: 10 buroyên me yên medyayê hatine şewitandin

Berpirsê Yekgirtû Îslamî Kurdistan piştî şewitandina van cihan bi şêweyekî lezgîn hişdarî dan ku buroya wan a li Zaxoyê di bin gefa êrîşkirinê de ye. Her di wê şevê de jî buroya Yekgirtû li Zaxoyê hat şewitandin, paşê buroyên Sêmêl, Duhok û Qeserokê jî hatin şewitandin. Endamê Polîtburoya Yekgirtûya Îslamî Kurdistan, Îsmaîl Revendî bo Rûdaw got ku "li Parêzgeha Duhokê bi giştî 10 buroyên saziyên ragihandinê yên Yekgirtû hatin şewitandin, ji wan radyo, televizyon, rojname û kovarên Yekgirtû."

Ji bilî Mele Îsmaîl, di bûyerên Zaxoyê de partî û saziyên hikûmî yên vê navçeyê jî tiliya tawanbariyê dirêjî Yekgitûya Îslamî dikin. Yekgirtû jî Partiya Demokrat a Kurdistanê (PDK) ji şewitandina buroyên xwê berpirsyar dibîne û herdu alî jî tometên aliyê himber red dikin.

Rêvebirê Asayişa Zaxo, Aştî Koçer jî dibêje "tiştekî ronî û eşkere ye ku eva li Zaxoyê pêkhatî bi dehifdana Melbenda Yekgirtû bû." Koçer di dirêjahiya daxuyaniya xwe de got "berpirsê Yekgirtû heftiyekê beriya bûyeran tiştek di nava melbendê de nehiştibûn. Şeva berî bûyerê jî wan di kanala televizyona Xabûr de, ku girêdayê Yekgirtû ye, programek pêşkêş kirin bo dehifdana xelkê li dijî senterê mesaj û dikanên meyfirotinê."

Pêşkêşvanê vê programê li kanala Xabûr, Ebdilqahid Teha ev yek piştrast kir ku şeva berî bûyeran programeke di televizyonê de hebû û xelkê bi şêweyekî zindî têkilî pê re dikirin û tê de doza nehiştina senterê mesaj û dikanên firotina şerabê dikirin. Vî pêşkêşvanê kanala Xabûr bo hewiha bo Rûdaw got ku "di roja xwepêşandanê de, çend demjimêran beriya şewitandina buroya Yekgirtû, bêtiriya tiştên nava buroyê birin derve, ji wan jî aletên radyoya Yekgirtû li Zaxo."

### PDK: Bûyera Zaxo ne bê plan bû

Di heman şeva ku têde buroyên Yekgirtû Îslamî Kurdistan hatin şewitandin, polîtburoya vê partiyê li Hewlêrê civiya û daxuyaniyek derbarê bûyeran derxist û sûcê şewitandina buroyên xiste stûyê PDKê. Yekgirtû di beşeke daxuyaniyê de dibêje "ev kar berevajî hemû mafên basît ên piralî, azadî, bihevre jiyan, aramî û asayişa herêmê ne. Em sûcê vê dixin stûyê saziyên desthilata Herêmê li vê navçeyê, weke Asayiş, Polîs, Parêzgar û saziyên siyasî, bi taybetî Partiya Demokrat a Kurdistanê weke hêzeke berpirs li wê navçeyê."

Lê Polîtburoya PDKê di daxuyaniya xwe de ku di roja piştî bûyerên Zaxoye derxist, ev tometên Yekgirtû red kirin û got "tawanbarkirina partiya me ji aliyê wan nayê qebûl kirin û em ê dûvçûnê bo bikin û em berpirsyariya vê yekê dixin stûyê wan ku divê doza lêborînê ji partiya me bikin."

Li ser navê Polîtburoya PDKê, Cafer Îbrahîm jî bi dûr zanî ku ev tiştê li Zaxoyê pêkhatî bi dehifdana melayekî be û got "tiştê li Zaxoyê pêkhat plan û program jê re hatibû danîn û ne tiştekî bêyî plan bû. Ji ber ku gellek meleyên din hene ku axaftinên tundtir ji vî meleyî kirine, bêyî ku reaksiyona xelkê hebe. Lê tiştê Zaxoyê diyar bû ku hatibû plankirin. Xelkekî pankartên "La îlahe îlla ellah" bilind kiribûn, qezme di destên xelkê de hebûn û grûp grûp li ser cihan belav dibûn." Cafer Îbrahîm hişdarî dide û dibêje "hin alî hene dixwazin li Herêma Kurdistanê lawaziyeke siyasî çêkin, da ku rewş bighîje qeyrana siyasî, lê Yekgirtû Îslamî Kurdistan divê di vê derbarê de hişyar be. Ji ber ku Herêma Kurdistanê pêwîstî bi arîkarî û tebayiyê heye û ti qeyranên din pêwîst nake."

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî jî berî ku di roja yekşemê de serdana Zaxoyê bike, wî di roja 3yê vê mehê de daxuyaniyek derxist û ev bûyerên devera Badînan protesto kirin, paşî biryara pêkanîna komîteyeke lêkolînê bo van bûyeran derxist. Li gor zanyariyen ji Rêvebiriya Polîsên Zaxoyê, piştî xwepêşandanan û şewitandina cihan heta niha bêtirî 150 kes hatine girtin."

## Agir giha Silêmaniyê jî

Şeva 4/5ê vê mehê senterekî mesajê li caddeya şêst metroyî ya bajarê Silêmaniyê hat şewitandin. Rêvebirê Tûrizmê li Rêveberiya Giştî ya Turizma Silêmaniyê, Mistefa Rehîm di vê derbarê de bo malpera Rûdawê got "kesên nezan şûşeyên benzînê avêtine nava senterê û şewitandine. Lê hêzên parastina şaristanî zû gihan cihê bûyerê û agir kontrol kirin." Mistefa Rehîm herwiha got "ti zerareke giyanî li pey şewitandina senterê mesajê pêknehat, tenê zerarên maddî jê çêbûn."

### "Van bûyeran xurtiya tûrizmê şikandin"

Mîna ku Rêvebirê Karûbarên Tûrîzmê behs dike, mimkine bûyer û aloziyên vê dawiyê tirsê bixe dilê hin Çîniyên li Kurdistanê dixebitin ku "xwediyên hin senterên mesajê vegerin welatên xwe." Mistefa Rehîm herwiha got "van bûyeran xurtiya tûrizmê şikandin, di demekê de ku Hewlêrê xwe amade dikir ku di 2015ê de milmilaneya hemû paytextên erebî bike, weke baştirîn paytexta turzmê. Lê mixabin ev wê bandoreke xirab bike."

## 400 hezar kes ji Wanê bar kirin bajarên din

# Wan nayê veguhastin!



Şaredarê Wanê Bekir Kaya (yê navîn) dibêje ku veguhastina Wanê propagandaya AKPê ye

Li gor gotina medyaya Tirkiyeyê, hikûmeta AKPê biryar daye ku bajarê Wanê ji nûve çêbike, lê li cihekî din, rûniştevanên bajar jî vê yekê weke propaganda dibînin û dibêjin hikûmetê biryar daye tenê xaniyan ji wan kesan re çêbike, ku di encama erdhejê de xaniyê wan hilweşiyan.

Roja 23ê Cotmehê erdhejeke 7.2 pile li gor pîvana Richter bajarê Wanê hejand û ji bilî mirina 605 kesan û birîndarbûna 3 hezarên din, gelek xanî û avahiyên Wanê hilweşiyan, herwiha roja 10ê Mijdarê jî careke din erdhejek bi pileya 5.6 Wan hejand û nêzîka 30 avahiyan rûxand. Niha 10 hezar xêzanên Wanê bê cih in û di bin konan de dijîn.

Piştî van herdu erdhejan, di baweriya pisporan bajarê Wanê di bin metirsiyeke berdewam ya erdhejan de ye. Berî çend rojan cîgirê serokwezîrê Tirkiyeyê Beşîr Atalay, Wezîrê Karûbarên Civakî Faruk Çelîk û wezîrê Jîngeh û Bajarvaniyê Erdogan Bayraktar serdana Wanê kirin.

Erdogan Bayraktar bû wezîrê jîngeh û bajarîbûnê ku wek wezareteke nû piştî hilbijartina 12ê Hezîrana îsal hate damezrandin. Navborî destnîşan kir ku li derdora bajarê Wanê bajarekî nû bi hevkariya wezareta şaredariya Wanê çêdikin: “Heya niha me 4 milyon kîlometroyên çargoşe diyar kirine. Di demeke pir kurt de, em ê bo bajarê nû dîzayneke xweş çêkin.”

Rojnameyên Tirkiyeyê belav kirine ku Wana nû li nêzîka çiyayê Erek, li devera Kevenlî tê çêkirin, ji ber ku ev dever çiyayî ye û ji hêla erdhejê dûr e.

Rojnamevan Selîm Kemaloglu, ku rûniştevanekî bajarê Wanê ye, rexneyan li hikûmetê digire ku navçe weke “herêma karesatê” îlan nekiriye. “Jiber ku herdu erdhejan gelek qurbanî li pey xwe hiştin, herwiha piraniya xanî û avahiyên bajarê Wanê hilweşiyan.”



Wezîrê Jîngeh û Bajarvaniyê, Erdogan Bayraktar

Derbarê wê yekê jî ku hikûmeta AKPê dibêje bajarekî nû li devereke çiyayî ya nêzîkî Wanê çêdike, navbirî got: “Wan bajareke li ser navçeyeke avî hatiye çêkirin û metirsiya erdhejê li ser heye. Bangewaziya wê yekê jî tê kirin ku Wan bi guherînên xwezayî dikeve ser hêla fay. Lewma ew cihê ku hatiye diyarkirin, ji bo gulastina Wanê baştirîn cih e.”

Şaredarê Wanê û Serokê Odeya Pîşesaziya Wanê, vê yekê red dikin û bi baweriya wan medyaya Tirkiyeyê bi qest vê nûçeyê belav dike û hewl dide bi mil û baskê hikûmetê hilbide.

### Şaredarê Wanê: Ji bo malwêranan 2 hezar yekîne tên avakirin

Serokê Odeya Pîşesaziya Wanê Mîrza Nadiroglu ji Rûdawê re got: “Ev mesele bi çewtî nîşanî raya giştî hatiye dayin. Bajar li cihê xwe dimîne. Tenê kesên ku mal û xaniyên wan di erdhejê de hilweşiyan, li navçeya Kevenlî xanî ji wan re tên çêkirin.”

Derbarê hejmara kesên ku bajarê Wanê terikandine piştî herdu erdhejan, Nadiroglu dibêje: “400 hezar kesan Wan terikandin û berbi bajarên Urfa, Entab, Edene û Mêrsînê çûn. 600 hezar kes mane, lê ew jî bi neçarî mane.”

Şaredarê Wanê Bekir Kaya, ku ser bi BDPê ye, dibêje ku guhastina bajarê Wanê propagandaya destçêkirî ya medyaya Tirkiyeyê ye û got ku ti biryar û hewldanek bo çêkirina bajarekî nû li holê tune: “Tiştê wezîrê jîngeh û bajarîbûnê tekezî lê kir ne biryara hikûmetê bû, lê tenê nêrîna wî bû. Pirs ji me kir, derbarê gelo kûder baş e bo çêkirina bajarekî nû. Bi baweriya me jî derdora çiyayê Erek cihekî baş e, jiber ku xaka wê çiyayî û tund e, lê belê ev tenê axaftin bû.”

Kaya wiha axaftina xwe qedand: “Ji bo kesên ku xaniyên wan rûxiyane û bê mal bûne biryara çêkirina 2 hezar yekîneyên hatiye standin.”

## » Şirove

### Demografiya Wanê guherandin



**Zekî Ozmen**

Li ser erdheja li Wan û derdora wê re hê meh û nîv derbas nebûye, lê belê ev karesat ji rojeva dezgehên çapemeniya tirk derketiye. Çavkaniya bûyerên navxweyî yên Tirkiyeyê ji bo dezgehên çapemeniya cîhanê çapemeneniya tirk e. Ji ber vê sedemê karesata erdhejê ne di rojeva çapemeniya cîhanê de ye jî. Medyaya kurd jî êdî bi taybetî cih dide nûçeyên rojane yên di vê derbarê de pêk tên. Naveroka van nûçeyan jî li ser alîkariyên mezin û bi taybetî jî li ser şewatên konên qurbaniyên erdhejê ne.

Gelo birînên erdhejê hatin dermankirin an di rastiyê de sedemeke taybet heye ku dezgehên çapemeniya tirk di demeke kurt a piştî karesatê de êdî ev bûyer ji rojeva sereke dûr xist?

Ger em refleks û berteka destpêkê ya hinek pêşkêşvanên tv'yên tirkî, şîroveyên bi hezaran xwînerên portalên înternetê yên tirkî û nêzîkbûna hikûmeta AKPê ya bûyerê bidin ber çavên xwe, bi hêsanî diyar dibe ku helwesta medyaya tirkî jî girêdayî vê xelekê ye.

Bi taybetî xetên paralel yên helwesta hikûmeta AKPê ya ku niha piraniya dezgehên çapemeniyê kiriye bin destê xwe, bi hikûmetên salên 1960yî û yên 1970yî re hene. Di wan salan de li bajarên kurdan yên wek Gimgim, Bêdlîs û Çewlikê erdhej pêk hatin. Wê demê dewletê hewl da ku qurbaniyên erdhejê ji cih û warên wan bike. Ji ber peymana kar a di navbera Tirkiyeyê û Almanyayê de, dewleta Tirkiyeyê hewl da ku gelek mexdûran rêkin Almanyayê. Ji ber vê sedemê Almanyayê jî li ser daxwazên bi israr yên rayedarên tirk bêhtir rê didan Kurdên ji van herêmên ku zerar ji erdhejê dîtibûn.

Bêguman ev israra rêkirina qurbaniyên erdhejê ya Almanyayê ne ji ber ku rayedaran ewqas ji çavên reş û belek ên Kurdan hez dikirin. Armanca sereke ya vê hewldana ku heta radeyekî pêk jî anîn, bicihanîna konsepta dûrkirina Kurdan a ji bajar û herêmên wan bû. Bi gotineke din; dewletê dixwast bi mehneya erdhejê demografiya Kurdan biguhere.

Niha dîsa heman dewlet bi heman mentalîteyê tevdigere: Di destpêka erdheja li Wan û derdora wê de rê nedan ku tîmên rizgarkirinê yên biyanî werin û alîkariya dewletên xwedî ezmûn jî nepejirandin. Bi birêveberiya herêmî re, ya ku di destên Kurdan de ye, hevkarî nekirin. Daxwazên gel ên hewandin û konan wekî bitrî bi lêv kirin. Mînakeke din a berbiçav a van rojan jî dîsa alîkariya xaniyên prefabrîk û alavên din ên xweparastina ji sermayê yên ku hikûmeta Başûrê Kurdistanê ji gelê Wanê re rêkiribû. Vê hefteyê diyar bû ku rayedarên dewletê hêjî ev alîkarî li qurbaniyên erdhejê belav nekirine.

Mirov dikare bi dehan mînakên bi vî awayî bide, lê belê di dawiya vê nivîsê de divê were pirskirin ka gelo dewlet di warê daxwaza guherandina demografiya Wanê de çiqasî gihiştiye armanca xwe...

Herwiha dîsa divê mirov pirs bike ka gelo siyaseteke taybet a dewletê li dijî bajarê Wanê hebû an na...

Bajarê Wanê li Bakurê Kurdistanê dû Amedê re qaleya duyemîn a mezin a tevgera siyasî ya kurd e. Berterefkirina cemawera Kurdên Wanê yên piştevaniya bizava kurd a siyasî dikin ji bo dewletê tê wateya bidestxistina kemîna duyemîn a serhildêriya siyasî ya kurd.

Divê di vî warî de mixabin were gotin ku dewlet heta radeyeke bilind gihişte armanca xwe. Li gor çavdêrên ji herêmê bi sed hezaran qurbaniyên vê erdhejê koç kirin û piraniya wan berê xwe dan metrepolan. Qurbaniyên niha li herêmê mayin û vê sir û sermayê di bin konan de jî jiyana xwe berdewam dikin, bi taybetî Kurdên belengaz ên ji herêma Colemergê yên ku dewletê gundên wan şewitandi ne.

Wekî encam; tevgera kurd a siyasî jî li Wanê di bin erdhejê de ma. Ji bo ziyan mezintir nebin, dem dema bikaranîna rast a derfetên di destên birêveberiyên herêmî yên di destê bizava siyasî ya kurd de ye.

www.arsivakurd.org



Ahmet Faruk Unsal



Meral Daniş Beştaş




Mehmet Ali Aydin

# Hejmara girtiyên dosya KCKê gihişte 5 hezar kesan

## » Serokê rêxistina MAZLÛMDERê: Dibe ku ev bibe meseleyeke ewropî û navnetewî

**Hêmin Xoşnaw**

Li Tirkiyeyê û Bakurê Kurdistanê kampanyaya girtina endam û şaredarên kurdên girêdayî BDPê bi tometa "endamtiya Koma Civakên Kurdistanê KCKê" berdewam e, li himber jî nerazîbûn sînorên Tirkiyeyê derbas dikin.

Vê kampanyayê di 14ê Nîsana sala 2009ê de destpê kir û heya niha di çend şepêlên cihê de domandiye. Di kampanyaya dawî de jî di 26ê Mijdarê de 44 kes ji aliyê polîsên Tirk ve hatin girtin, ku 33 kes ji wan parêzer bûn û piraniya wan parêzerên rêberê PKKê Abdullah Ocalan bûn.

### Ji sedî 95ê wan endam û dostên BDPê ne

Cîgira hevserokê BDPê û seroka ofîsa yasayî ya BDPê Parêzer Meral Daniş Beştaş derbarê hejmara girtiyên "dosya KCKê" ji Rûdawê re got: "Li gor şopandinên me heya niha 4 hezar û 785 kes hatine girtin, ku ji sedî 95ên wan endam û dostên me ne."

Hejmareke zêde ya wan kesên ku navên wan dane polîsên Tirk bo girtinê, ji Tirkiyeyê reviyane. Berpirsê berê yê liqa Amedê ya BDPê Mehmet Alî Aydin ku li gor medyaya Tirkiyeyê ji tirsa girtin û cezakirinê berbi Herêma Kurdistanê reviyaye, dibêje: "Bi hezaran endamên me bêyî sebeb avêtine zindanan. Ji bilî gotinên asayî bi telefonê ti belge di destê polîsan de tune. Lewra bo girtina wan nîne ti bingeheke rewa. Hinek hevalên me xwe radest nekirine, yan xwe li hundirê Tirkiyeyê veşartine; yan hatine Herêma Kurdistanê û yan jî çûne Ewropayê."

Hikûmeta Tirkiyeyê, wan girtiyan bi wê yekê tometbar dike ku pêwendiya wan ligel KCKê heye û xwestine dewletekê di nav dewleta Tirkiyeyê de çêkin. Jiber ku rayedarên hikûmetê îddia dikdin ku KCK hewl dide ku li derveyî qanunên dewleta Tirkiyeyê dadgeh û saziyên paralel çêbike û daxwaz ji hevwelatiyan dike ku ji bo kar û kêşeyên xwe neçin dezgehên hikûmetê lê herin ba wan.

### "BDPê ti dadgehek taybet çênekiriye"

Lê belê Mehmet Ali Aydin red dike û dibêje: "Kesên ku hatine girtin heya vêga mîrovek jî nekuştine, tenê di çarçoveya qanunan de ji bo bidestveanîna mafên gelê kurd kar kirine. BDPê ti dadgeheke taybet bi xwe çênekiriye, lê li gor kevneşopiyên Kurdan hinek kêşe hene, bi navçîtiya çend alî û kesan çareser dibin. Heya vêga BDPê sedên kêşeyên neyartiyê çareser kirine, ne ku her BDPê lê waliyên girêdayî desthilata AKPê car caran kêşeyên bi vî rengî bêyî çûyîna dadgehê çareser kirine."

### "Cerdevan jî hişyar bûne û şerê PKKê nakin"

Derbarê haşkirina çekdarên Kurdên girêdayî dewletê (caş) an jî ligel PKKê, Aydin got: "Em ji sala 1991ê ve bi berdewamî daxwaza hilweşandina sîstema cerdevaniyê dikin. Di heman demê de ji cerdevanan re dibên ku çekhilgirtin ne karê wan e, bergirîkirin karê hikûmet û dewletê ye. Siyaseta Tirkiyeyê siyaseta serdema Osmaniyan e ku alayên Hemîdiyan çêkirin. Lê baş e îro Kurd hişyar in û rastiyan dibînin. Cerdevan jî hişyar bûne û şerê PKKê nakin û dengên xwe didin BDPê."

### Dosya gihişt Ewropa

Her çiqasî ev kampanya ji du sal û nîvan ve didome, lê li derveyî Tirkiyeyê kêm deng vedaye. Lê roja 1ê Kanûnê li Stockholma paytexta Swêdê panelek hat sazkirin ku tê de ji xênî berpirsê komîsyona mafên mirovan a YE Tomas Hammberg, çend kesayetiyên Ewropî jî tevlî bûn.



Oral Çalişlar

Di wê panelê de berpirsê komîsyona mafên mirovan a YE, girtina siyasetvanên kurd di bin navê endamtiya KCKê de weke karekî "ne yasayî" binav kir û got ku îsal 4 caran serdana Tirkiyeyê kiriye û ligel berpirsên hikûmetê, saziyên civaka sivîl û rojnamevanan civiyaye û got: "Rewşa Tirkiyeyê pir xirab e û heya vêga ji ber cudahiya bîr û baweriyan zêdeyî 70 rojnamevan hatine girtin û 7 parlamenter li zindanê ne. Girtin bi navê KCK kiryarên ne yasayî ne, bo vê mebestê me raporeke berfireh amade kiriye û di dawiya vê mehê de pêşkêşî konseya Ewropayê dikin."

### Çalişlar: YE ji operasyonên KCKê nerazî ye

Bi vî awayî jî dibe ku di dahatû de ev dosya li Ewropa deng bide. Nivîskarê Rojnameya Radikal Oral Çalişlar ku pir caran rexne li wê kampanyaya hikûmetê girtine, ji Rûdawê re got: "Di vê dema dawî de dengê nerazîbûnê di nav YE de li dijî operasiyona KCKê bilind dibe. Nizanim heya weke kuderê diçe û çi dibe. Dibe ku YE bo meremên xwe yên siyasî di dahatû de vê mijarê li dijî Tirkiyeyê bikar bîne."

Herwiha serokê rêxistina MAZLUMDERê ku saziyeke mafên mirovan e li Tirkiyeyê û nêzîkî AKPê ye, Ahmet Faruk Unsal, operasyonên KCKê weke "xeletiyeke siyasî û xeter" binav dike û ji Rûdawê re dibêje: "Hêvîdar im nebe meseleya Ewropa û Tirkiyeyê bikare di nav xwe de çareser bike, lê mixabin ev mesele dike bibe meseleyeke navnetewî û nemaze Ewropî."

### Serokê rêxistina OzgurDerê: Bi awayek keyfî tên girtin

Serokê rêxistina OzgurDerê ku ew jî li Tirkiyeyê saziyeke din a mafên mirovan e, Razvan Kaya tekez dike ku demeke dirêj e derbarê kampanyayên girtinê de rexneyan li hikûmetê û dezgehên têkildar digire û dibêje: "KCK pêkhateyeke ne yasayî ye, mafê dewletê heye çavdêriya wê bike. Lê gelek kesên ku tên girtin ti belge li ser wan nîne ku pêwendiya wan ligel KCKê heye. Bi baweriya min bi awayekî keyfî tên girtin."

Derbarê wê yekê ku li gor wî ev dosya wê here YE, serokê MAZLUMDERê got: "Tirkiyeyê peymana mafên mirovan a Ewropayê îmze kiriye. Herwiha pêvendiya xwe bi biryarên dadgeha mafên mirovan a Ewropayê ve ragihandiye, lewma pir asayî ye ku YE di vî alî de helwestê werbigire."

www.arsivakurd.org

## Wezîrê Navxwe yê Hollanda

# Hollanda ji aloziya navbera Kurd û Tirkan ditirse

**Hollanda (Rûdaw) -** Wezîrê Navxwe yê Hollanda Piet Hein Donner li parlamenê ragihand, jiber rewşa ku di navbera herdu aliyan de li Tirkiyeyê didome, ew pêşbînî dike ku aloziyên navbera Tirk û Kurdên rûniştevanên Hollanda zêde bibin.

Li gor gotina polîsên Hollandî, şer û pevçûn di navbera Kurd û Tirkên Hollanda di rojên 26- 30.10.2011êde li bajarên Amsterdam, Rotterdam, Den haag, Utrecht, Amersfoort, Zinstrick-Wezerland, Tilburg û Arnheim qewimiye.Herwiha polîsan ragihand ku Kurd û Tirk ji bo rêkxistina xwenîşandan û mitîngan malperên tora civakî yên weke Facebook û Twitter bikar tînin.



Wezîrê Navxwe yê Hollanda got derbarê derketina nasyonalîzma Kurd û Tirkan li Hollanda, hikûmet nikare ti daxuyaniyan bide. Herwiha navbirî diyar kir ku hikûmeta wî lêkolînê di wan bûyeran de nake, ji ber ku hikûmet rêza azadiya siyasî digire, lê soz da ku çavdêriya hemû karên tûnd bike û kesan ku karên ne yasayî û gotinên nijadperest dikin, ceza bide wan.

Di bersiva çend pirsiyaran de derbarê wê meseleyê de, Donner li parlamentoya Hollanda, got: "Her tiştek li cîhanê diqewime, li nava Hollanda jî bandor dike." Navbirî amaje da wê yekê jî ku bûyerên li Tirkiyeyê bandorê li ser tevgera rûniştevanên Kurd û Tirk li Ewropayê dikin û got: "Hikûmet ne di wê baweriyê de ye ku ev gaveke erênî ye ku şîdet li cihên din dibe sedemê derketina nakokiyan li Hollanda."

Herwiha berpirsên Hollandî bi mebesta aramkirina rewşê ligel nûnerên Tirkiyeyê li Hollanda û ligel saziyên penaberan re axivîne, ku di nav wan de hinek saziyên kurdî jî hene.

Herwiha waliyê Amsterdamê Eberhard Edzard van der Laan ligel çend saziyên tirkî û kurdî civiya û piştre jî belavokeke hevbeş weşandin û soz dan ku rê li ber derketina her alozî û şerekî bigirin.

Derbarê vê hewldanê de Wezîrê Navxwe Donner got: "Ev daxuyanî û hevdengî gaveke erênî ye."

Sedet Karabulut, ku parlamenterekî esilkurd e û endamê Partiya Sosyalîsta Hollanda ye, berî demekê ji Rûdawê re ragihand ku pêwîst e rewşeke aştiyane di navbera Tirk û Kurdan de hebe: "Aştî di navbera Tirk û Kurdan de tiştekî girîng e. Li ser bingeha civakeke aştiyane, di wê baweriyê de me ku pêwîst e pirsgirêka kurd bi rêyeke demokratîk bê çareserkirin."

L igor statîsteke gruba kirîzan a navdewletî ICG, niha zêdeyî 3 hezar çalakvanên siyasî yên kurd li zindanên Tirkiyeyê hene, tenê ji ber ku bîr û baweriyên xwe ragihandine û ev jî bûye sedemê derketina şer û meşan li welatên Ewropayê.

ICG di rapora Îlona borî de nivîsiye: "Pêwîst e desthilatdarên tirk û bizava nasyonalîzma kurdî, bi hevre kar bikin daku şîdeta berfireh dîsa dernekerve û venegerin wan hestên tûnd ku di nav herdu aliyan de hene."

# Penaber ji Bakur kêm bûne, êdî ji Başûr û Rojava tên

Hevkarên vê saziyê ji sala 1997ê û şûn de li Almanyayê alîkariya tibbî, psîkolojîk û ya burokratîk didin penaberên bê derfet...

**Azad Dîcle** Bochum

Komela Alîkariya Tibbî bo Penaberan a Bochume, ango Medizinische Flüchtlingshilfe Bochum e.V., li bajarê Bochumê di sala 1997ê de ji aliyê çendîn doktor, mirovên hiqûqnas û akademisyenan ve hatiye damezirandin. Komela navborî li Almanyayê xwediyê gelek têkiliyên berfireh e û ji her çar perçeyen Kurdistanê jî agahdar e. Yek ji hevkarên vê saziyê, Kader Dogru ya sosyal-pedagog ragehand ku di salên dawî de hatina penaberan ji Bakurê Kurdistanê bo Almanyayê her diçe kêm dibe, lê got, "Kurdên ji Sûriyê û ji Îraqê niha ji Kurdên perçeyên din zêdetir tên."

Di sala 1997ê de li bajarê Bochumê çendîn aktîvîstên mafê mirovan, doktor û hiqûqnas bi armanca alîkarîkirina penaberên ku rastî pirsgirêkan tên, bi navê Komela Alîkariya Tibbî bo Penaberan saziyek sivîl dadimezirînin. Dr. Knut Rauchfussê ku bi salan li Bakur û Başûrê Kurdistanê wek doktorekî sînornenas kar kiriye û rewşa Kurdan baş dizane, serkêşiya vê projeyê kiriye û niha jî berdewam dike. Saziya navborî demeke berê li navenda Bochumê di avahiyekê de buroyek mezin vekir bo karên xwe. Kader Dogru ev çend meh in di vê saziyê de wek sosyal-pedagog kar dike û bi taybetî jî bi pirsgirêkên ciwanên penaber yên temenê wan navbera 14 û 21 salî ne, mijûl dibe. Wek ku Dogru ragehand, ew alîkariyê didin penaberên "îllegal" yên ku li Almanyayê nasname û mafên wan tune ne. Dogru got ku ew di 5 hêlan de projeyan dimeşînin û ew proje wiha rêz kirin: "Em di hêla alîkariya civakî de û têkilî bi penaberan re datînin, ango alîkariya sosyal û psîkolojîk bo penaberan dikin. Beşa duyem psîkoterapî ye û du hevkarên me dixebitin. Beşa sêyem rêvebirî ye û hevakerek kar dike. Di beşa karên derve de, ango têkiliya bi saziyên dewletê û saziyên din yên sivîl re, hevkarek mijûl dibe. Beşa me ya dawî jî kampanya û projeyên demkî ne. Herwiha bi zêdeyî 60 welaten re têkiliyên me didomin, bi gellek şaredarî û zanîngehen re û bi taybetî jî bi Zanîngeha Viyenna re danûstandinên me hene."

**Em jî yek ji wan saziyan e ku di Protokola Stenbolê de cih digire**

Wek ku Kader Dogru ragehand, damezrênerê vê saziyê Dr. Knutt Rauchuss hem li Almanyayê û hem jî li Bakur û Başûrê Kurdistanê bi salan bi gellek saziyên kurdî re hevkarî kiriye û di nav rayagîştî ya Kurdan de baş tê naskirin. Lê Dogru destnîşan kir ku rewşa penaberên kurd di 10 salên dawî de ne wek berê tê rojevê û sedemên wê jî wiha vegot: "Kurdên ji Tirkiyeyê bêtir di destpêka salên 90î de hatin Almanyayê û ji destpêka salên 2000î ev hejmar her diçû kêm bû. Piştî ku hikûmeta Merkelê di sala 2005ê de li hemberê hatine penaberan yasayên nû derxistin, hatine penaberan ji Tirkiyeyê gellek kêm bû. Lê di vê demê de bûyerên li Îraqê bi giştî û di sala dawî de jî li Sûriyê rûdan, wiha kirin ku ji van welatan niha bêtir Kurd berê xwe didin Almanyayê."

Kader Dogru da zanîn ku ji ber astengiyên ku yasaya nû ya penaberan derdixe, gellek penaber weke berê zû bi zû maf nagirin û rastî astengiyên burokratîk tên. Dogru debarê rola saziya xwe de wiha dom kir: "Mînak, penaberek serî li me dide û dibêje ku nasnameya wî tune ye, ew ji polîs direve lê pêdiviya wî bi alîkariya tibbî heye. Doktorên xêrxwaz yên ku bi me re dixebitin, wan muayene dikin û çi pêwîst be bo wan dikin û ne polîs û ne jî dadgeh nikare astengî derxîne. Paşê em bo mafê wan ên huqûqî dest bi hewldanan dikin."



Kader Dogru



**Maf dane malbatek kurd ji Başûrê Kurdistanê**

Derbarê hejmara penaberên kurd ji her car perçeyên Kurdistanê bo Almanyayê, Kader Dogru got ji ber ew bi penaberên temen biçûk re mijûl dibe, ew nikare hejmarek rastîn bide, lê got li gor agahiyên ku ew ji hevalên xwe yên kar digire, niha bêtir Kurd ji Sûriyê tên û gelek ji wan xortên ciwan in, herwiha ji Başûrê Kurdistanê jî di demên dawî de Kurdên ezîdî tên.

Di sala 2002yê de malbateke kurd ya ji Başûrê Kurdistanê ligel 3 zarokên xwe wek penaber tên Almanyayê. Wek ku Kader Dogru behs dike, keça wan a mezin ji aliyê leşkerên rejîma Baasî ve rastî destdirêjiya seksî tê û paşê tê kuştin. Ji ber ku malbat xwedî li keça xwe derdikeve û hewl dide ku leşker bên cezakirin, rastî astengiyan tên, îşkence dibînin û neçar dimînin ku welat biterikînin.

Ev malbat ji sala 2004ê sûnde têkilî ligel vê saziyê çêkiriye û Kader Dogru dibêje ku ji bo mafên hiqûqî wan alîkarî daye malbatê, herwiha alîkariya psîkolojîk dane wan û demeke berê ligel gellek astengiyan wan karîne mafê mayînê bo vê malbatê bistînin.

www.arsivakurd.org



## Siyasetvanê Dêrsimî yê li parlemena Hollanda, Yildirim:

# Divê tazmînat bê dayîn

**Azad Dîcle**

Senatorê Hollandayê û Serokê Partiya Solidara (Piştgirî) yê Dêrsimî Duzgun Yildirim pirsên Rûdawê bersivandin. Yildirim lêborîna Erdogan bo komkujiya Dêrsimê dilsoz nabîne û dibêje, “Eger niyeta wan erênî be divê 7 daxwazên Dêrsimiyan bînin cih.”

Nîqaşên derbarê komkujiya Dêrsimê û lêborîna Serokwezîrê Tirkiyeyê Recep Tayyip Erdogan di rayagîştî de didome. Siyasetvanekî kurd ji Dêrsimê ku niha li Hollanda senator e û di heman demê de Serokê Partiya Solidara (Piştgirî) ye, Duzgun Yildirim diyar kir ku eger Erdogan û dewleta Tirk dilsoz bin divê guh bidin xwestekên Dêrsimiyan û weke dewleteke ciddî gavên erênî bavêjin. Yildirim got, “Lêborîna fermî divê ji aliyê dewletê ve bê xwestin, tişta ku Erdogan kir destpêk e. Tenê lêborîn bê wate ye, divê berpirsiyarî tê de hebe. Pêngava herî rastîn ew e ku dewlet tazmînatê bide bo Dêrsimiyan.” Duzgun Yildirim derbarê helwesta CHPê de jî got, “Hikûmetê li ser navê dewletê niha bi devkî lêborin xwest, divê CHP jî ji bo paşeroja xwe lêborîn bixwaze.”

**“Dêrsimê li şûna tazmînatê 7 daxwaziyên din dikin”**



Siyasetvanê kurd yê parlemena Hollanda, Duzgun Yildirim ji bo çareseriya Dêrsimê pêşniyara tazmînatê kir û got, “Lê weke ez dizanim gelê Dêrsimê li şûna tazmînatê 7 daxwaziyên din dike.” Yildirim diyar kir ku eger Erdogan di helwêsta xwe de dilsoz be divê guh bide xwestekên Dêrsimiyan û wan pêk bîne. Yildirim bang li Dêrsimiyan jî kir û xwest ku ji propaganda û derewên partiyan bawer nekin. Yildirim got wek Dêrsimiyekî ew di qada siyasetê de hertim pirsgirêka gelê xwe tîne ziman û wiha axivî: “Divê ji her demê zêdetir niha yekitiya xwe xurt bikin û hêza xwe ya yekgirtî nîşan bidin. Bila bawerî bi partiyên sîstemê yên heyî nekin û binêrin ka kî û kîja hêz û partî mafên wan bi dil û can diparêzin, xwe nêzî wan bikin.”

### 7 daxwaziyên Dêrsimiyan

Serokê Federasyona Komeleyên Dêrsimê Özkan Tacar ragihand ku tenê lêborîn ne bes e û got “Divê nave Dêrsimê şûnde bê dayîn, ew keçên ku piştî komkujiyê birine dane malbatên polis û leşkeran bila nasnameyên wan bên eşkere kirin.”

Serokê Federasyona Komeleyên Dêrsimê Özkan Tacar hefta borî li parlemenê serdana partiyên siyasî kir û ji bo daxwaziyên Dêrsimiyan piştgiriya wan xwest. Serokê Federasyona Komeleyên Dêrsimê Özkan Tacar di serdana BDPê de ji aliyê Parlemena Îdirê Pervin Buldanê hat pêşwazîkirin û di hevdîtinê de Tacar got wek Kanada, Fransa û Almanyayê kirin bila piştî lêborînê mafên pêwîst bên dayîn û 7 daxwazên Dêrsimiyan wiha anîn ziman:

*1- Divê navê Dêrsimê şûnde bê dayîn û dîsa fermî bê bikaranîn.*
*2- Divê hemû arşîvên dewletê bên vekirin.*
*3- Divê lîsteya kesên ku hatine sirgûnkirin, nemaze keçên ku bo malbatên polis û leşkeran hatine dayîn, bê eşkerekirin.*
*4- Em daxwaz dikin ku cihê gora Seyîd Riza û hevalên wî bê eşkerekirin û bo wan gor bên avakirin.*
*5- Divê navên wek Sabiha Gökçen, Fevzi Çakmak û Abdullah Akdoğan ku dilê Dêrsimiyan diêşînin, ji avahî û kolanan bên rakirin.*
*6- Em azadiya bîr û baweriya xwe ya Elewî û Kizilbaşîtiyê dixwazin.*
*7- Projeya Bendavên Mûnzûrê ya ku çand û xwezaya me dixin bin metirsiyê, dive bê betalkirin.*

# Almanya pere dide 66 hezar qurbaniyên komkujiyê

Hikûmeta Almanyayê biryar da ku mehane pere bide hin kesên din ku di Şerê Cîhanê yê Duyemîn de mexdûr bûne. Saziya Cihuyan ya bi navê Claims Conference ragihand ku hejmara van kesan 16 hezar kes in.

Li gor daxuyaniya ku Saziya Cihuyan ya ku li Amerîkayê kar dike, Claims Conference ragihand ew nêzîka salek e bi hikûmeta Almanyayê re li ser vê pirsgirêkê hevdîtinan didomînin û di dawî de herdu alî lihev kirine. Li gor vê peymanê wê Almanya meha 300 euro bide 16 hezar Cihûyên ku di kampên Naziyan de dîl hatine girtin û weke mexdûrên Komkujiya Cihûyan tên binavkirin.

Cihgirê saziya navborî Greg Schneider ragihand ku hikûmeta Almanyayê wê serê her kesekî mehana 300 euro pere bide û got wateya ne pere ye, lê helwesteke erênî ye ji bo lêborîna bûyerên berê.

Almanya her sal ji bo qurbaniyên komkujiya Cihûyan bi giştî 650 milyon euro tazmînatê dide. Li gor diyardeyên hikûmetê mehane 66 hezar kes di bin vê navî de pere ji hikûmetê distîne.


Greg Schneider


**Rûdaw li hevkarên nû digere**

**Rûdaw tora xwe ya hevkaran berfireh dike**



Rûdaw ji bo ku hîn bêtir û ji nêzîk ve jiyana Kurdên Ewropayê bişopîne, li hevkar û peyamnêrên nû li hemû welat û bajarên Ewropayê digere. Baş zanîna bi kurdî şert e ji bo hevkariyê.

**Kesên eleqedar dikarin serî li Rûdawê bidin: info@rudaw.eu**

**Parêzer Uzun** — **Buroya Parêzeriyê**

Em li seranserê Almanyayê di xizmeta we de ne

Parêzer Oktay Uzun

Reklam

**Beşên me yên kar**

Dadweriya Kar (Arbeitsrecht)
Dadweriya Aborî (Wirtschaftrecht)
Dadweriya Trafîkê (Verkehrsrecht)
Dadweriya Werzişê (Sportrecht)
Dadweriya Peymanê (Vertragsrecht)
Dadweriya berpirsiyariya pizîşkî (Arzthaftungsrecht)

**Navnîşan:**
Sonnemannstr. 3
60314 Frankfurt am Main

**Tel.:** 069 – 49 600 87
**Fax:** 069 – 49 600 88
**email:** info@kanzlei-uzun.de
**web**: www.kanzlei-uzun.de


www.arsivakurd.org

# Mardinspor jî bi girtinê re rû bi rû ye

Tenê 13 futbolvanên Mardinsporê hene û jiber biryara TFFê nikare leystikvanên nû transfer bike.





Mardinspor niha di tabelleyê de di rêza herî dawî de cih digire û tenê 5 pûanên wê hene

**Mardin (Rûdaw) -** Yek ji tîmên futbolê yê herî kevin yê Bakurê Kurdistanê Mardinspor e. Ev tîm di sala 1969ê de piştî ku tîmên wek Timurspor, Mezopotamyaspor û Gençliksporê di nava hev de bûn yek, hat damezirandin. Heta niha Mardinspor negihaye lîga yekemîn û di navbera lîga 2., lîga 3. û lîga amator de diçe û tê. Mardinspor jî wek Diyarbakirsporê xwediyê pirsgirêkên aborî û burokratî ne û dibe ku lîsansa wê bê betalkirin û klûb bê girtin.

Di sezona 2011/2012ê di dawiya 11 hefteyan de Mardinspor tenê carekî bi serketiye, 2 car wekhev maye û 8 car jî wenda kiriye, û niha tenê 5 pûanên wê hene. Mardinspor niha di lîga 2.de di Grûba Sor de cih digire û derbarê wê de tê gotin ku wê xwe ji lîgê paşve bikişîne an jî wê bê girtin.

Piştî ku Diyarbakirspor di sala 1968ê de hat damezirandin, li Mêrdînê jî sê tîmên amator hatin cem hev û bi navê bajarê xwe tîmeke futbôlê damezirandin. Lê Mardinspor di 42 salan de heta niha qet negihaye lîga yekem a Tirkiyeyê. Mardinsporê sê maçên dawiyê li ser hev wenda kirin, lê Serokê Klûba Madinsporê Ahmet Allak rexne li hekeman digire û dibêje, “Ez fahm nakim çima hekem li dijî Mardinsporê heman helwestê nîşan didin.“ Allak got ew ji ber biryara hekem ya şaş di maça ligel Alanyasporê de bi 10 kesan leyîstine û lewma wenda kirine. Serokê Klûba Madinsporê Ahmet Allak herwiha şanaziyê bi leystikvanên tîma xwe kir û got “ligel têkçûnê me performanseke baş nîşan da.“



**Serokê Klûba Mardinsporê Ahmet Allak helwêsta hekeman rexne dike**

### Tenê 13 leystikvan hene

Jiber deynan, wek Diyarbakirsporê, Mardinspor jî ji aliyê Federasyona Futbolê ya Tirkiyeyê (TFF) rastî astengiyan tê. TFF hewl dide ku lîsansa Mardinsporê betal bike, lewma Mardinspor nikare ji derve leystikvanên nû transfer bike. Niha 13 futbolvanên Mardinsporê hene, lewma di her maçê de Mardinspor van 13 leystikvanên xwe amade dike û neçar e heta ku pirsgirêka transferê bê çareserkirin, wiha berdewam bike.

Di dawiya meha îlonê de Serokê Klûba Mardinsporê Hadi Çomaktekin ji ber nexweşiyê xwe paşve kişand û di şûna wî de Ahmet Allak hat hilbijartin. Allak û rêveberên Mardinsporê ji bo karibin mesrefên tîma xwe bidin bo reklamên derûdora saheyê bi fîrmeyên Mêrdînê re ketine nav têkiliyan.

3 maçên dahatû yê Mardinsporê ev in: Di 10ê Kanûnê de wê ligel Trabzon; di 18ê Kanûnê de wê li saheya xwe ligel Fethiyesporê û di 25ê Kanûnê de wê ligel Beypazari Şekersporê bileyîze.

# Rojnamevanên Kurdistanê serdana R. Madrid û Barcelona dikin



Rojnamevanên sporê yên Herêma Kurdistanê di 5ê Kanûnê de serdana Spanyayê kirin.

Li gor nûceya AKnewsê endamê lêjneya rojnamevanên werzişî yên Herêma Kurdistanê Ferhad Ekrem Ebûd, ragihand ew li ser daxwaza Civata Rojnamevanên Sporê yên Spanyayê, şandeke rojnamevanên werzişî yên Kurdistanê serdana Spanya dikin.

Serokê şandeya rojnamevanên werzişî yên Kurdistanê Celal Perîşan jî got, ji bilî serdanê, ew dixwazin bo pêşvebirina ragihandina werzişî ya Kurdistanê digel hinek saziyên Spanyayê protokol û rêkeftin îmze bikin û wan jî vexwînin bo Kurdistanê.

Perîşan, diyar kir ku ew ê hewl bidin digel saziyên werzişî yên Spanyayê têkilî deynin û vê yekê jî bidomînin.

Rojnamevanê werzişî û endamê şandeyê Saman Silêman jî da zanîn ku di vê serdanê de, wê rojnamevanên Kurdistanê li bajarê Madrîdê beşdarî konferanseke rojnamevaniya sporê bibin û wê piştre serdana klûbên Real Madrid û Barcelona bikin û herwiha wê maça El Classico ya navbera her du tîman de jî temaşe bikin.



Wêne: Rûdaw

# Tango bi kurdî

## Kurdjantin

**Amed (Rûdaw) -** Mamosteyên dansê Kemal Işik û Sevgî Almiş li ber stranên kurdî reqsa tangoyê hînê Kurdan dikin. Işik destnîşan kir ku kursiyerên wan ên leşker jî hene û leşker li ber muzîka kurdî tango dikin.

Navenda Dansê û Hunerê Tango MED ev 3 sal in li Amedê karê xwe didomîne. Mamosteyên dansê Kemal Işik û Sevgî Almiş heta niha li atolyeyên dansê, ku li zanîngeha Batman û Amedê vebûne, perwerdehiya dansê dane. Kemal Işikê Amedî û Sevgî Almişa Dêrsimî heta niha bi sedan Kurd hînê tango û dansên din ên latînî kirine. Işik û Almiş niha jî hemû Kurdan bi stranên kurdî dawetê tangoyê dikin. Di nava Navenda Dansê û Hunerê ya MEDê de 6 polên tango, poleke dansên latînî û poleke zarokan jî hene. Bi giştî li navendê 8 pol û 100 jî kursiyer hene. Ji bo hînbûna dansên latînî û tangoyê ji Êlih, Mêrdîn û Sêrtê ciwan tên Amedê, tevlî kursê dibin û eynî şevê vedigerin bajarên ku jê hatine. Işik da zanîn ku ev 3 sal in li Amedê di barekê de şeva tangoyê (mîlanga) amade dikin. Kesên ku dixwazin bi têra xwe dans bikin, kincên li gorî dansê li xwe dikin û tên wê barê. Kesên ku dixwazin tevlî van şevan bibin dikarin bi tena serê xwe jî biçin. Yanî pêwîst nake li ba xwe jinek yan jî mêrek bibin. Ji bo rojên taybet (wekê 8ê Adarê) jî, bernameyên taybet tên amadekirin.

### Leşkerên tirk li ber muzîka kurdî direqisin

Mamosteyê reqsê Işik da zanîn ku ew weke vîzyon muzîka kurdî di dansên latînî û tangoyê de bi kar tînin û wiha axifî: “Hunermendên weke Mehmet Atli, Dodan, Mirady, Jan Axîn, ji bo tango an jî dansên latîni bi kurdî stranan çedikin. Em û kursiyerên xwe jî li ber vê muzîkê dans dikin. Navenda me cara ewil li ber muzîka kurdî tango hînê hezkiriyên dansê dikin. Me navê xwe jî li ser deriyê kursê bi kurmancî nivîsand. Ev ji bo me gellek girîng bû. Kursiyerên me yên doktor û mamoste jî hene. Di nava kursiyerên me de leşker jî hene. Doktor jî, mamoste jî, leşker jî li ber muzîka kurdî dans dikin.” Işik bal kişand ser wê jî, ji ber ku çanda folklora kurdan dewlemend e, Kurd dikarin zû hînê tangoyê bibin û wiha berdewam kir: “Di hişê herkesî de baweriyeke wiha heye ku ‘Tango danseke erotîk e’. Ez weke mamosteyê tangoyê dikarim bêjim tiştekî wisa tune ye. Tango danseke arjantînî ye û dansa serhildanê ye. Li Arjantîne dansek heye bi kêran tê çekirin, li Amedê jî listika aware heye. Ev jî bi kêran tê çekirin. Ez dixwazim Kurd ji xeynî dewlemendiya xwe ya folklorê, tango û dansên din jî hîn bibin. Ji ber ku hin tiştên Kurdan û neteweyên din ên cîhanê pir dişibin hev.”



> Doktor jî, mamoste jî, leşker jî li ber muzîka kurdî dans dikin

## Şehên Talebanî dixwaze temenê xwe yê mayî li Kurdistanê bibe serî

**Hewlêr (Rûdaw) -** Hunermenda Rojhilatê Kurdistanê Şehên Talebanî li Hewlêrê ye. Derbarê mebesta serdana wê ya vê carê, Şehên Talebanî ji Rûdawê re got “ev serdana min bo bicihkirina çend karên hunerî ye, weke çêkirina çend klîpan bo stranên albûma min a berê û bi nêt im karê wênegirtina wan li vir bicih bînim.”

Şehên Talebanî herwiha got ku ew dixwaze di vê serdanê de bi hevkariya çend dezgehan hinek ahengan li bajarên Kurdistanê saz bike: “Niha em gotûbêjan dikin û vêga ne diyar e kengî ew aheng tên sazkirin.”

Derbarê vegera wê ya yekcarî bo Kurdistanê, Şehên dibêje: “Berê hewldaneke min ya bi vî rengî hebû, lê biserneket. Hêvîdar im di siberojê de bikarim temenê xwe yê mayî li Kurdistanê bijîm.”

Wêne: Rûdaw

Reklam
Bi me cihêwaz bibin.
Ji bo reklam, dîzayn û çapkirinê em di xizmeta we de ne.
Reklama televizyon û rojnameyan, flayer, afîş, name, eşyayên xelatan, kovar, pirtûk, malperên înternetê, dawetname...htd.
Bi kurtasî ji bo her pêwîstiyek we di aliyê reklam û çapkirinê de...
Hûn jî xwe bighînin me...
Hûn jî cihêwaziyê hîs bikin!
graf-adolf-str. 70a
40210 düsseldorf
tel.: 0211 - 17957982
fax: 0211 - 17957983
www.dassign.de
info@dassign.de
DAS SIGN®
werbeagentur & verlag gmbh
mobil : 0173 - 270 67 81

www.arsivakurd.org





Haydar Işik moderatoriya semînerê kir



Derhêner Ozgur Findik

» Parêzgar Erdal Dogan: Em zanin ku Almanya gazên kîmyewî daye rejîma Ataturk

# Wagona Reş û Sirgûnên Dêrsimê yên 38ê hatin Munchenê

**Munchen (Rûdaw)-** Fîlmê dokumenter "Vagona Reş û Sirgûnên Dêrsimê yên 38ê " ku derhêneriya wê Ozgur Findik dike û serpêhatiya komkujiya Dêrsimê vedibêje li Almanyayê, li bajarê Munchenê roja yekşema borî hate pêşandan. Ji bilî fîlm di peşêngehek de wêneyên komkujiya Dersimê jî hatin pêşkêş kirin. Di dawiya çalakiyê de derhêner Ozgur Findik û parêzger Erdal Dogan bersiva pirsên temaşevanan dan. Nivîskar Haydar Işik jî moderatoriyê kir.

Derhênerê fîlmê dokumenter "Kara Vagon" Ozgur Findik da zanîn ku wî derbarê sirgûn û komkujiya Dêrsimê de heta niha nêzikî 1600 belge berhev kirine û bi gelek şahîdên komkujiyê re jî axifiye. Wî herwiha got kişandina fîlmê wî yê dokumenter nêzikî 250 saetan ajotiye û di dawiyê de ew daxistine 65 deqeyan. Findik bal kişand ser ked û karên ku ji bo fîlm terxan kirine û got, "Jiber ku derfetên me yên aborî pir hindik in, em nikarin karê xwe baş pêş de bibin. Pêdiviya me bi alîkariya aborî heye û em li benda alîkariya gelê kurd û gelê Dêrsimê ne."

### "Gotinên Erdogan bo dadgeha netewî girîng in"

Parêzger Erdal Dogan jî da zanîn ku wan bi mebesta ku Komkujiya Dêrsimê bibin dadgehên navnetewî, heta niha 4 konferensên mezin lidarxistine û got, "Em belgeyên komkujiya Dêrsimê berevdikin û yên ve-şartî jî em dixwazin derxin holê. Serokwezîrê Tirkiyeyê Erdogan komkujiya Dêrsimê qebûl kir. Lê tenê lêborîn têr nake, daxwaza me ew e ku hikûmeta Erdogan li Dêrsimê çi bûye û çi nebûye hemû tişt derxîne holê û sûcên ku Tirkiyeyê kirine qebûl bike. Gotinên ku Erdogan kirin bo dadgeheke navnetewî wek gotinên fermî ne û pir girîng in."

Parêzger Erdal Dogan di dawiya axaftina xwe de balê kişand ser rola Almanya ya di komkujiya Dêrsimê de û got, "Em zanin ku Almanya gazên kîmyewî dane rejîma Ataturk û bi hezeran Dêrsimî bi çekên kîmyewî yên Almanyayê hatine kuştin."

# Wêneyê ku şerê Viyetnamê rawestand

**Siyaweş Goderzî**

Carnan wêneyek dikare guherîneke mezin li cîhanê çêke. Wêneyê Nick Ut yê keça viyetnamî ku ji ber napalmê direvê, ne ku tenê karî rêbaza şerê Vietnamê biguhere, lê sedemê şerê Vietnamê jî ji cîhanê re ronî kir. Ev wêne bû sedem ku Amerîka li jêr zexta raya giştî ya dijî şer, dawî li dagîrkerî û şerê Viyetnamê bîne.

Wênegirê ajansa Associated Press (AP) Nick Ut, gava roja 08.06.1972yê keça 9 salî ya viyetnamî Kim Phuc bi piştеke şewitî ji ber êrîşa bombeyên napalmê tevî girî direviya, wêneyekî wê girt. Ev wêne bû yek ji wêneyên navdar ên cîhanê û yekemîn wêne ye di dîroka şer de ku kariye dawî li şerekî bîne.

Di hevpeyvînek wênegir Nick Ut ligel kovara Journalisten de, ku sendîkaya rojnamevanên Swêdê derdixe, Nick Ut wan rojan tîne bîra xwe: "Li bîra min e, gava min wêne girt, ji ber wê karesata mezin giriyam. Li ser caddeyekê bûm û bi wênegirtina bombedûmana gundê Trang Bang ve mijûl bûm. Ji nişka ve hejmareke zarokan bi rev berbi min hatin. Min çend wêne ji wan girtin û du shûsheyên avê bi lez derxistin û bi ser pişta şewitî ya wê zarokê de kir. Min Kim Phuc û zarokên din ligel xwe birin nexweşxaneyekê. Doktor ji min re got shansê mabûna keçikê ji ber şewitîna zêde, pir kêm e. Lê belê piştî 17 neştergeriyan û mabûna zêdeyî salekê li nexweşxanê, keçik bi saxîtî vegeriya mala xwe."

### "Niha jî pêwendiya me heye"

Nick Ut berdewam dike: "Piştî ku vegeriyam ofîsa AP li Los Angelesê, wêne cara yekê roja 12ê Hezîranê hat belavkirin. Paşketina belavkirina wêne ji ber wê yekê bû ku berpirsekî li AP bi behaneya ku wêne rût e, belav nekiribû. Vêga jî, piştî 40 salan, bi rêya telefon û e-mailan pêwendiya min ligel Kim Phuc heye. Hê jî saxlemiya wê pir baş e, mêr kiriye, du zarokên wê hene û li Kanadayê dijî. Wêne di dema xwe de şoreşeke mezin dada. Niha jî rojane xelk ji min re dibêjin "Nick, te bi wî wêneyî şer sekinand." Ez bi xwe jî di wê baweriyê de me ku vî wêneyî bi rastî şer rawestand."

### "Wê demê rojnamevan azadtir bûn"

Careke din axaftina Nick Ut: "Lê karê wênegirtinê di şer de niha pir zehmet e. Dewlet û artêşa Amerîka rê nadin medyaya serbest ku çavdêriya şeran bikin. Şerên Afganistan û Îraqê du mînakên nû ne ku astengî li ser medyaya serbest di wan de hatin danîn. Di şerê Viyetnamê de em bi tevahî serbest bûn herin ku û li ku û wêneyê kî bigirin, kesî nedikarî astengiyan deyne ser rêya me. Lê mixabin vêga ne wiha ye. Niha pirr dijwar e qala rastiyan bê kirin."


Nick Ut wêneyê "keçika napalmê" nîşan dide

www.arsivakurd.org



## Sekreterê Partiya Yekîtî ya Kurd li Sûriyê, Îsmail Heme:

# Daxwaza Kurdan li Sûriyê federalî ye!

*Sekreterê Partiya Yekîtî ya Kurd li Sûriyê Îsmail Heme, ku partiya wî yek e ji wan 10 aliyên ku vê dawiyê Civata Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê pêk anîn, endamê wê şandê bû ku heftiya borî serdana serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî kir. Îsmail Heme piştî civîna ligel Barzanî, bi Rûdawê re axivî.*



Wêne: Rûdaw

**Rûdaw: We di konferansa damezrandina Civata Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê de mafê çarenivîsê bo Kurdan weke daxwazeke Kurdan destnîşan kir. Lê we kifş nekiriye ku bi tevahî daxwaza çi dikin, ji ber ku mafê çarenivîsê otonomî, federalî, konfederalî û serxwebûnê jî lixwe digire.**

**Îsmail Heme:** Biryara me bo tevahiya Sûriyê ye, ew jî ew e ku Sûriyê divê bibe dewleteke demokratîk, parlamenî û piralî. Di aliyê siyasî de nenavendî be, li dinyayê jî nenavendîtiya siyasî tê wateya federaliyê. Em daxwaz dikin li Sûriya nû çend herêm hebin. Wiha jî mafê çarenivîsê ku Kurdan biryar li ser dane ji federaliyê pêk tê, her çiqasî heya vêga me ew yek ronî nekiriye ku daxwaza me ji mafê çarenivîsê çi ye, lewma niha em bi danîna projeyekê ve mijûl in ku divê Kurd daxwaza çi bikin. Di konferansa Civata Niştimanî ya Kurdî de li gor hinek endaman zehmet e federalî bê bidestxistin.

**Civata Niştimanî ya Sûriyê dibêje Civata Niştimanî ya Kurdî daxwaza xwe bi ronî diyar nekiriye. Di demekê de, di ezmûna Başûrê Kurdistanê de diyarkirin û çespandina federaliyê di kongreya opozisyona Îraqê de li Londonê di sala 2002yê de û dûre jî di kongreya Selahedîn de pir giring bû. Hûn hest nakin eger hûn vê yekê nekin xelet e?**

Kek Mesûd daxwaz kiriye em



### Heya weke vêga PYDê xwenîşandanek jî li dijî rêjîma Sûriyê nekiriye

proje û daxwazên xwe bi ronî deynin, ew jî piştgiriya me dike. Vêga şanda me weke Civata Niştimanî ya Kurdî li Qahîre ye, amadekariyê dikin bo girêdana kongreya opozisyona sûrî li Qahîre ku bi çavdêriya Yekîtiya Dewletên Erebî dibe. Me ji şanda xwe ya kurdî re gotiye ku divê mafên gelê kurd di destûra Sûriyê de bên tespîtkirin û Kurd weke neteweya duyem li Sûriyê bê hejmartin û kêşeya kurd divê



### Şerê navxwe li Sûriyê destpê kiriye, lê Kurdistana Sûriyê lixwe nagire

bi rêya mafê çarenivîsê bê çareserkirin. Niha Civata Niştimanî ya Sûriyê jî projeyek pêşkêş kiriye û tê de dibêjin li Sûriyê Kurd netewe ne û pirsa kurd weke pirsa neteweyekê çareser dibe, lê ev tenê proje ye. Yekîtiya Dewletên Erebî jî ragihandiye ku divê mafê Kurdan di destûra nû ya Sûriyê de bê çespandin û aliyên opozisyonê jî daxwazên gelê kurd qebûl bikin.

**Hûn dibêjin em daxwaza federaliyê dikin, PYD jî daxwaza "otonomiya demokratîk" dike, hinek aliyên din daxwaza mafên çandî dikin. Gelo ev ne kêşeyeke ye ji bo têgihiştina himber û derve ya daxwazên gelê kurd?**

Me weke partî di kongreya xwe ya borî de meseleya otonomiyê pêşniyar kir, lê vêga weke Civata Niştimanî ya Kurdî me ew daxwaz jî derbas kir û em daxwaza sîstema nenavendiya siyasî bo Sûriyê dikin, yanî federalî bo Kurdistan Sûriyê. Lê PYD daxwaza otonomiyê nake, lê daxwaza xweseriyê dike, di aliyê yasayî de divê parlemen û hikûmeta navxwe ya otonomiyê hebe, lê xweserî tenê berfirehkirina hinek desthilatên îdarî ye.

**Ew civatên ku li Rojavayê Kurdistanê ji aliyê PYDê hatine hilbijartin ji we re nabin kêşe?**

Erê kêşe ye. Ji bo pêkanîna Civata Niştimanî ya Kurdî heya weke qonaxa dawî jî em bi hevre bûn, lê 20 rojan berî girêdana kongreyê vekişiyan û sedem jî siyasî bû. Daxwaz kirin ku nabe Kurd danûstandin û pêwendiyan ligel opozisyona erebî ya sûrî ya derve bikin, gotin ev opozisyon û Civata Niştimanî ya Sûriyê bi destê Erdogan hatine çêkirin. Me jî ev daxwaza wan red kir.

**Hûn wisa dibînin ku PYD ligel rêjîma niha ya Sûriyê ye?**

PYD heya weke niha xwenîşandanek jî li dijî rêjîma sûrî nekiriye. Li Efrînê, ku PYD bihêz e, ti xwenîşandan nehatine kirin. Ew tevî şoreşa sûrî nebûne, dibêjin piştî vê şoreşê wê hêzên îslamî li Sûriyê bibin desthilatdar, lewma ti xwenîşandan li dijî rêjîma Beşar Esed nekirine.

**Nûnerê PYDê li Herêma Kurdistanê got divabû serokê Herêma Kurdistanê em jî dawetî civîna xwe ligel aliyên Civata Niştimanî ya Kurdî bikira û bi vî rengî rêza Kurdan parçe dibe. Ji ber çi ligel we tevlî vê civînê nebûn?**

Niha em û PYD ne bi hevre ne. Li Sûriyê ligel me rûnanin, lê niha hewl tên kirin hevahengiyek hebe di navbera me û wan de. Lê heya vêga me li ser vê babetê li hev nekiriye.

**Civîna Civata Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê ligel serokê Herêma Kurdistanê gelo dereng bû, yan di dema xwe de bû?**

Bi baweriya me di dema xwe de hat sazkirin. Serokê Herêma Kurdistanê helwesta xwe ronî kir û got tiştê pêwîst bike em amade ne hevkariya Kurdên Sûriyê bikin. Barzanî got pirr giring e ku ligel opozisyona sûrî jî li ser daxwazên gelê kurd bigihîjin lihevkirinekê.



### Eger Barzanî serdana Sûriyê bikira, zerer digihişt Kurdên Sûriyê

**Piştî destpêkirina xwenîşandanan li Sûriyê, Hikûmeta Sûriyê, berovajî çend salên borî, Barzanî weke Serokê Herêma Kurdistanê vexwend Sûriyê, lê wî vexwendin red kir. Ev helwesta Barzanî di qazanc, yan ziyana Kurdên Sûriyê de bû?**

Bi rastî eger Serok Barzanî di vê demê de serdana Sûriyê bikira, zerer bû ji bo Kurdên Sûriyê, ji ber ku pirr caran hat gotin ku PDK û YNK Kurdên Sûriyê han didin, daku ligel serokê Sûriyê Beşar Esed danûstandinê bikin û ligel rêjîmê bin.

**Gellek welatan tirsa xwe nîşan dane ku şerê navxwe li Sûriyê derdikeve. Ev tirsa we jî heye?**

Vî şerî li hinek deveran destpê kiriye, xelkê sûrî hev dikujin li ser meseleya nasnameya mezhebî. Em weke Kurd li dijî şerê mezhebî ne.

**Tirsa we heye ew şer bigihîje deverên Kurdistanê jî?**

Na, ji ber ku li deverên kurdî mezhebiyet tune û em hevsînorên deverên erebên sunî ne li Sûriyê, lewma xetera şerê mezhebî li herêma Kurdistana Sûriyê tune.

**Berî çend rojan Serokkomarê Îraqê Celal Talebanî qala rewşa Sûriyê kir û got tirsa me heye ji alternatîva desthilata niha ya sûrî. Tirsa we jî heye ku kesên piştî Beşar Esed bên ji Kurdan re xirabtir bin?**

Ne mumkin e ku alternatîvekî xirabtir ji rêjîma Beşar Esed careke din li Sûryê bibe desthilatdar. Tirseke me heye ji Îxwan Muslimîn, eger bibin desthilat, lê hêzeke Îxwanan ya zêde tune li Sûriyê ku tirseke mezin ji wan hebe, ji ber ku ne piranî ne û bi tenê nikarin bibin desthilatdar. Ji bilî Elewî, Dirzî, Îsmailî, Filleh û çend alî û pêkhetayên din li Sûriyê hene.

**Beşar Esed daxwaza civînê ligel we kiribû, ji ber çi we red kir?**

Di çend mehên destpêka xwenîşandanên li Sûriyê ew daxwaz ji me kir, çend daxwazên me jî hebûn, ku divê destûra Sûriyê bê guherandin û Kurd tê de weke neteweya duyemîn bên nasandin, lê Beşar Esed ne amade bû bersiva daxwazên gelê Kurd bide, lewma me civîn red kir. Ev daxwaz gelek caran hatiye kirin, lê em ji helwesta xwe nehatin xwar.

**Hoşyar Zêbarî weke Wezîrê Derve yê Îraqê di civîna Yekîtiya Dewletên Erebî de dengê xwe neda bo rawestandina endamtiya Sûriyê û ferzkirina cezayên aborî li ser rêjîma sûrî. Hûn vê helwestê çawa dibînin?**

Em dizanin Hoşyar Zêbarî Kurd e, lê nûnertiya siyaseta derve ya Îraqê dike. Em pêgeh û rewşa Zêbarî li ber çav digirin, ji ber ku bi navê Hikûmeta Herêma Kurdistanê ew helwest wernegirtiye, lê belê bi navê Îraqê bû.

www.arsivakurd.org

## Budceya salane ya Herêma Kurdistanê: 13 milyar Dolar

***Rûdaw -*** *Li gor Serokwezîrê Hikûmeta Herêma Kurdistanê, Berhem Salih, aboriya Herêma Kurdistanê bi gavên mezin bi pêş dikeve û di sala 2012ê de wê hêza aborî ya Herêma Kurdistanê ji sedî 12 pêş bikeve. Wekî çavkaniya vê pêşbîniyê jî, Berhem Salih raporta salana ya Fonda Dirav a navnetewî (international Monetary Fund - IMF) nîşan da. Berhem Salih herwiha diyar kir ku budceya salane ya Herêma Kurdistanê ji sedî 30 mezintir bûye û gihiştiye 13 milyar Dolarên amerîkî. Salih herwiha diyar kir ku vêgavê bi nirxê 16 milyar Dolarên amerîkî veberhênan li Herêma Kurdistanê tê kirin, tenê li Silêmaniyê bi nirxê 6,4 milyar Dolarên amerîkî.*





# Bac ji şîrketên turizmê yên biyanî nayê standin



Wêne: Rûdaw

**Barzan Mihemed**

Serokê Heyeta Giştî ya Turizma Herêma Kurdistanê got ku ew ê bacê ji wan şîrketan nestînin ku turstan ji derve tînin Herêma Kurdistanê

Serokê Heyeta Giştî ya Turizma Herêma Kurdistanê, Enazyar Mewlewî Cebar bo Rûdawê got ew hewla wê yekê didin ku hemû pirsgirêkên warê turizmê çareser bikin da ku Herêma Kurdistanê jî weke welatên din ên cîhanê bikare bêtir turistan pêşwazî bike. "Şîrketên ku turistan ji derve tînin Herêma Kurdistanê em ê bacê jê nestînin û herwiha em ê karûbarên wan jî li mudîriyetên hikûmetê bêyî dirav bidin meşandin."

Heyeta Turizma Herêma Kurdistanê bacê ji van şîrketan nastîne da wan dehif bide ku turistan ji derve bîne Herêma Kurdistanê, Endazyar Mewlewî Cebar got, "ligel hatina turistan bo Herêma Kurdistanê wê dirav û samaneke mezin jî bi wan re bê."

Lê kesên ku turistan ji nava Herêma Kurdistanê dibin derve "ev taybetmendî ji wan nagire û ji ti corê bacê nayên lêborin."

**Li Kurdistanê 180 şîrketên turizmê hene**

**Bi taybetî şîrketên ku tur istan ji dervê bînin Kurdistanê wê bac nedin**

## Bankaya turîzmê tê vekirin

Komeleya Şîrketên Turizm û Hec û Omreya Herêma Kurdistanê ligel Heyeta Giştî ya Turizma Herêma Kurdistanê hewla wê yekê didin ku sîstemekî nû bidin meşandin da xal ji şîrketên turizmê re bên diyarîkirin. Serokê vê komeleyê, Îsmaîl Mihemed Sofî got, "şîrketên ku bêtir turistan tînin Herêma Kurdistanê wê bêtir bên piştevanîkirin, bac jê neyên standin, di warê turizmê da pile û girîngiyeke bêtir bê dan." Wî herwiha got "îhtîmala wê yekê jî heye ku ji bo alîkarîkirina şîrketên turizmê bankeke turizmê avabikin. Şîrketa ku bêtirîn xalên wê hebin wê bêtir alîkariyê ji vê bankê bigre."

Serokê Heyeta Turizma Herêma Kurdistanê amaje da wê yekê jî ku van şîrketan îmkanên wan ên kirîna otomobîlan nînin bo anîn û birina turistan bo cihên turizmê, loma wan li Herêma Kurdistanê daxwaza vekirina bankeke turizmê kirine da ku turist bikarin bi hêsanî li cihên seyranan bigerin. Wî herwiha got, "Hikûmeta Herêma Kurdistanê bo vekirina vê bankê razî bûye."

## Ji 180 sîrketan tenê ji sedî 20 çalak in

Li gor amarên ve komeleyê li Herêma Kurdistanê 180 şîrketên turizmê hene. Li Hewlêr 120, li Silêmanî 45 û li Duhoikê 15. Îsmaîl Mihemed dibêje "ji van tenê rêjeya ji sedî 20 çalak in, lê yên din bêtir girîngiyê didin firotina bilêtên firokeyan. Helbet em doza kêmkirina wan nakin, lê em dixwazin hîn bêtir bibin û karê xwe jî baştir encam bidin."

Li gor amarên Heyeta Giştî ya Turizma Herêma Kurdistanê îsal yek milyon û 350 hezar turist hatine Herêma Kurdistanê ku bêtiriya wan ji naverast û başûrê Îraq, Tirkiye, Îran û Japonyayê ne. Herwiha ji Ewrûpa jî ji herdu welatên Swêd û Almanya hatibûn.

Şîrketên turizmê hewla wê yekê didin bêtir turistan bînin Herêma Kurdistanê, ji ber ku ew ê bi nedana bacê bêtir qezenc bikin. Karmendê Şîrketa Îraqeke Din, Hêmin Ehmed eşkere kir ku wan bi mebesta anîna turistan ji Amerîka bo Herêma Kurdistanê torek ligel şîrketên Amerîka avakiriye: "Hikûmeta Herêma Kurdistanê eger bo me hesankariyan bike û cihên turizmê pêşbixîne, em dikarin her sal hejmareke zêde ya turistan ji Amerîka bînin Herêma Kurdistanê."

www

www.rudaw.eu
Her roj, 24 saetan mijar û hejmarên berê yên Çapa Ewrûpa ya Rûdawê bixwînê.

**Bitikîn!**

Reklam

ZEN-TAX
Steuerberatungsgesellschaft mbH

**Tel.:** 0221 – 16 83 17 42
**Fax:** 0221 – 16 83 17 43
**e-Mail:** info@zen-tax.de
**web:** www.zen-tax.de

**Navnîşan:**
Hohenstaufenring 55
50674 Köln

Mihesebeya Malî | Finanzbuchhaltung
Mihesebeya Heqdestê Karkeran | Lohnbuchhaltung
Hesabê Salê | Jahresabschlüsse
Beyanên Bacê | Steuererklärungen
Şêwirmendiya Avakirina Kargehan | Existenzgründerberatung
Karên Din | Sonstige Leistungen

www.archive.kurd.org



# Berdêlê du *GULÊN ZER* çilmisandin!



**Bawer Çem** Amed

Gulîzer Çetîna 57 salî ku hêj di 13 saliya xwe de, beriya ku bikeve cilan (periyoda jinan), bi darê zorê, bi berdêlê hate zewicandin, xwest ku jin beriya 25 saliya xwe nezewicin. Gulîzer Çetîn diyar kir ku di dema zewaca xwe de wê gellek caran lêdan xwariye, di serê wê de tîr hatiye şikandin û wiha got: "Berdêl tiştekî nebaş e. Em bihêlin, bila keçên me hevjînên xwe bi destê xwe hilbijêrin."

Orf û adetên berdêlê ku du malbat keçên xwe didin kurên hev û wan bi darê zorê dizewicînin, hindik be jî, li hin gund û navçeyên Bakurê Kurdistanê didome. Bi taybetî ji li bajarên weke Riha, Mêrdîn û Agiriyê ev kevneşopî hêjî heye. Li gorî qeydeyên berdêlê, dema ku mêrek dev ji jina xwe berde, divê ew mêrê din jî dev ji jina xwe berde. Dema ku yek li hevjîna xwe bixe, yê din jî neçar dimîne li hevjîna xwe bixe. Ev yek bi vî awayî tim didome. Rojnameya me Rûdawê xwe gihand du berdêlên ku hatine teqaskirin. Pir balkêş e ku navên van herdu berdêliyan jî Gulîzer e. Qedera van herdu jinên bi navê Gulîzer 44 sal berê, li Navçeya Licêya Amedê li hev rast tê. Ji ber ku heqê qelenê bi malbatan re tune bûn, herdu keçikên biçûk ji bo birayan kirin berdêlî. Ewçax Gulîzer Çetîn 13 salî, Gulîzer Kanan jî 15 salî bû.

### 5 sal mezin nivîsandin

Gulîzera 13 salî, beriya ku bikeve cilan (periyoda jinan), tê zewicandin. Piştî ku salek di ser zewaca wê re derbas dibe, hêj nû dikeva cilan. Ji bo ku di warê qanûnî de pirsgirêk dernekevin, di nasnameyê de emrê wê 5 sal mezin dikin. Li gorî ku Gulîzer Çetîn behs dike, dema ku xêliya bûkaniyê dan serê wê, wê ev yek weke lîstikek fêm dikir û digot qey wê piştî vê "lîstikê" careke din vegere mala bavê xwe û zarokatiya xwe bijî. Em li Gulîzer Çetîn guhdar bikin: "Haya min ji tiştekî tune bû. Rojekê hatin, ez xwestim, xêliyeke sor dan serê min, ez siwarê hespekî kirim û birim. Dema hatim ber deriyê mala xezûrê xwe, dîzikek dan destê min. Min sê caran li erdê xist, neşikest. Ji ber ku ez biçûk bûm. Min nedikarî dîzikek jî bişkînim. Xizmekî hevjînê min, ji dêvla min dîzik şikand."

### 'Di mehrê de meta wê got erê'

Çîroka Gulîzar helbet li vir naqede. Di navbera wê û hevjînê wê de tam 11 sal ferq heye. Ji ber ku jineke xweşik e, gundî ji hevjînê wê re dibêjin "eger tu lê nexî, ew ê dev ji te berde". Ji ber vê yekê hevjînê wê jî tim li hemberî Gulîzer Çetîn tundî bi kar tîne, lêdixe. Weke xwestinê, birîna mehra Gulîzer Çetîn jî balkêş e. Çetîn wiha behsa wê rojê dike: "Mele ji bo birîna mehra me hat. Ez xistim pişt perdê. Mele ji min pirsî û got tu dixwazî bizewicî? Min jî got na. Mele rabû ser piya ku biçe, bi zorê ew rûniştandin. Careke din pirsa 'tu dixwazî yan naxwazî?' kir. Lê meta min destê xwe danî ser devê min, nehişt ez xeber bidim û di şûna min de got 'erê'. Bi vî awayî mehra me hatibû birîn û zecaweke bi êş û azar dest pê kiribû." Li gorî Gulîzer Çetîn, divê ti jin beriya 25 saliya xwe nezewicin. Wê 2 keçên xwe jî dane xwendin û qet têkilî zewaca wan nebûye.

### 43 sal piştre bi xezûrê xwe re nan xwar

Berdêla din ku navê wê jî Gulîzer e, bi qasî Gulîzer Çetîn êş û azar nekişandiye. Ji ber ku dema ew zewiciye, 15 salî bûye û aqilê wê kariye hin tiştan bibire. Lê wê jî weke Gulîzera din lêdan xwariye, ji malê hatiye avêtin. Gulîzer Kanan ku 26 sal berê hevjînê xwe di qezaya trafîkê de ji dest daye, wiha behsa wan rojan dike: "Di daweteke nasê me de, min serê govendê dikişand û stran digot. Hevjînê min ez li ber pencereyê dîtime û ez ecibandime. Piştre çend caran hatin ez xwestim. Daweta min li gundê me, ya berdêla min jî li gundê wê bû. Ez dibirim, ew dianîn. Em di rê de li hev rast hatin. Me cara ewil ewçax hev didît. Min jî gellek êş û azar kişandiye. Rojekê ez çûm mala cînarê xwe, min ji hevjînê xwe destûr nexwestibû. Hate malê, bi tîrên ku em nanê sêlê çêdikin kete ser min û ew tîr di serê min de şikand." Gulîzer Kanan ku dayika 4 keç û 2 kuran e, dixwaze orf û adeta berdêlê ji holê rabe û herkes li gorî dilê xwe bizewice. Li gorî Kanan hemû kes divê di tercîhên xwe de azad bin û wiha got: "Berê me nedikarî em li ba xezûrê xwe nan bixwin. Ev 44 sal in zewicî me, hêj cara ewil min par li ba xezûrê xwe nan xwar. Me berê nedikarî em li ba xezûrê xwe rûnên jî. Bila kes bi berdêlî nezewice."

**Daweta min li gundê me, ya berdêla min jî li gundê wê bû. Ez dibirim, ew dianîn. Em di rê de li hev rast hatin. Me cara ewil ewçax hev didît**



Wêne: Rûdaw

**Gulîzer Çetîn û Gulîzer Kanan berdêliyê hevdu ne**


## Kampanya "Tu jî Rûdawê nas bike"




Kampanya "Tu jî Rûdawê nas bike" didome. Bibe abone û 3 mehan bêpere Rûdawê bixwîne. Piştî 3 mehan abonetî otomatîk bi dawî dibe. Ji bo abonetiyê forma jêr dagire û ji Rûdawê re bişîn. Zûtir û hêsantir bi rêya e-mail dibe: navê xwe, hejmara telefona xwe û navnîşana xwe ji **info@rudaw.eu** re bişîn û di zûtirîn demê de Rûdaw dighije ber destê we.

## Abonetiya Rûdaw

Ez dixwazim ji bo dema
☐ Sê mehan bê pere ☐ Şeş mehan ☐ Salekê ☐ Vekirî

bibim aboneyê/ya rojnameya Rûdaw.

Rojnameya min heftane bişînin vê navnîşanê
Nav :
Paşnav :
Navnîşan :

Telefon a min :
E-Mail a min :

Buhayê abonetiyê ji vê kontoyê bikşînin;
Hejmara kontoyê :

Şîfreya bankê (BLZ) :
Bank :
Xwediyê kontoyê :

Dem û cîh: Destnîşan:

Anjî ez ê bihayê abonetiyê bişînim ser kontoya Rûdawê ya li jêr û dekontoya wê ji navnîşana Rûdawê re bişînim.

Bihayê abonetiya salekê ji bo nav Almanya: **60 Euro**
Bihayê abonetiyê şeş mehan ji bo nav Almanya: **30 Euro**
Ji bo abonetiya derveyî Almanya, pêwendî ligel Rûdawê deynin.

**Hesabê Rûdaw**
Rudaw Media GmbH
**Bank** Deutsche Bank Köln
**Konto Nr** 2450161
**BLZ** 37070024

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln / Almanya
e-mail: **info@rudaw.eu**

## Şirove



### Qurbaniyên nezanî û siyaseta Kurdistanê

**Hîwa Mehmûd Osman**

Serok Barzanî pêwîste komîteyeke din a lêkolînkirinê pêkbîne, ji bilî komîteya ku hatiye pêkanîn bo lêkolînkirina tawanên li Zaxo û Behdînan hatine encamdayîn. Ev komîte divê dûvçûna karê PDKê bike li van navçeyan, her ji dema ku kontrol ketiye destê PDKê di sala 1991ê de.

Van bûyeran zerareke mezin li Herêma Kurdistanê û navdariya wê da, ji bilî wê yekê ku hêdî hêdî derdikeve ku destekî derveyî heye bo têkdan û zerargihandina bi hemû aliyan. Saziyên siyasî yên Kurdistanê divê bi ciddî berê xwe bidin van bûyeran û derbarê sedemên wan lêkolînan bikin û berpirsyariya vê yekê jî hildin ser milê xwe ku wan kultura nezanî û tundûtîjiyê çêkirine.

Min heftiya borî derbarê bilindbûna rol û xurtbûna bingeha Herêma Kurdistanê nivîsî û bi taybetî siyasetên vê navçeyê piştî civîna Serokê Herêma Kurdistanê ligel partiyên siyasî yên kurdî yên Sûriyê. Lê vê heftiyê em behsa rewşa aloz a Herêma Kurdistanê dikin, ka çawa nezanî û "cehalet" û bêtoleransî dikare her tiştî ji nav bibe.

Bi kurtahî ev qewmî: di welatekî de ku dibêje ew beşeke ji cîhana modern û azad, grûpeke xortan ku, temenê bêtiriya wan kêmtirî 20 salî bû, ji aliyê melayekî hatin dehifdan û paşî çûn bo nîşandana acizbûna xwe û bi destxistina serketinê, dijî lawaztirîn û destkurttirîn tebaqa civaka xwe, ku ew jî Xiristiyan û Êzîdî ne, dest bi êrişan kirin.

Ev tişt di baştirîn mînaka "Îraqa din" de pêkhat Partiyên siyasî ku niha mijûlê tawanbarkirina hevdu ne, derbarê tiştê qewimî, bêyî ku hesabê wê yekê bikin ka ev ev talankar û tawanbar girêdayî kîjan alî ne, divê vê yekê ji bîr nekin ku ew hemû berhemê desthilata kurdî ne û bêtiriya wan piştî 1991ê ji dayik bûne.

Bûyerên Zaxo û Sêmêlê bîranîneke talankarî û tûndûtîjiyên bajarê Londonê bûn. Yek ji helwestên sereke yên piştî damezrandina serweriya yasayê ew bû ku pêwîste reform di sîstema perwerdeyê de bê encam dayîn, daku generasyoneke nû ava bibe ku bikare baş û xirabiyê ji hev cuda bike.

Yek ji pêrabûnên modern ên desthilatdariyê hilberîna di xelkê de ye, lê ne hilberîna kelûpelan. Sedema sereke jî ewe ku pêkhatina van corê bûyeran bên astengkirin û ev bûyer eşkere dikin ku Kurdistanê ti karekî ji vê corê encam nedaye.

Peyv û hevokên toleransê, cudakirina ol û siyasetê ji hevdu û cudakirina navbera cîhad û talankariyê de ne zelal mane, mîna ku di van bûyeran de hat dîtin. Desthilatdarên Kurdistanê divê van bûyeran wekê zengekê bibînin. Ew ne serketî bûn di avakirina generasyonekê ku bikare cudahiyê navbera baş û xirabî de bike. Ew ne serketî bûn di avakirina generasyoneke nû ku toleransa wî hebe û bikare cudahiya navbera ol û tawanê bizane.

Ji îro û bi taybetî di van bûyeran de, PDK berpirsyare. Wan hertim şanazî bi wê yekê kirine ku Parêzgeha Duhokê bingeha wane, qet nebe encamên hilbijartinan ev tişt nîşan daye. Ev eger rast bû, Serok Barzanî divê komîteyek din ava bike, da lêkolîna wê yekê bike ka çawa PDK karên xwe li vê navçeyê cîbicî dike, çi dike ji bo ku exlaqê tolerans û hurmetgirtina aliyê himber parastî bihêle û çawa generasyoneke nû ku li ber çavên wan mezin bûye ti xirabiyê di wê yekê de nabîne ku biçe ser milkê kesekî din û bişewitîne.

## Komkujiya Dêrsimê û Kurdên zûbawer



**Kawe Emîn**

Sala 2005ê, bi tesaduf min kitêbek dît ku ku ji aliyê Huseyîn Yildirim ve ji frensî bo swêdî hatibû wergerandin. Piştî xwendina kitêbê min nivîskarê wê dît û min daxwaz jê kir ku rê bide min kitêbê wergerînim ser zimanê kurdî, piştre ji aliyê Dezgeha Kurdolojî li Silêmaniyê di sala 2007ê de, hat çap û belavkirin.

Naveroka pirtûkê ji vegotineke devokî ya jineke kurd ya salmezin a komkujiyê pêk tê, ku bi xwe şahidiya bûyerên komkujiya Dêrsimê kiriye. Gava mirov wê kitêbê dixwîne, hest dike ku di 1937 û 1938ê de çi neheqiyeke mezin li Kurdên Dêrsimê hatiye kirin.

Ti dagîrkeran, Tirkên Osmanî û Tirkên nû jî nikarîbûn desthilata xwe li wê deverê ferz bikin, lê Kurdên Dêrsimê ji ber dijwariya erdnîgariya devera wan û parastina taybetmendiyên xwe yên Kurdî, karîbûn xwe ji her êrîşeke dagîrkeran biparêzin û bi ser de jî ne amade bûn li jêr ti şert û mercan jî bacan bidin dewletê.

Tiştê ku dewleta Tirk li Dêrsimê kir, bi hemû wateya peyvê komkujî bû. Jiber ku dewletê bi awayekî eşkere hewl dide nijada Kurdên Dêrsimê qir bike, polîtîkaya kuştin û koçberkirina bi kom meşand û li gor îstatîstîkên ne fermî nêzîka 40 hezar Kurdên Dêrsimê bi kom hatin kuştin ku piraniya wan a herî zêde jin, zarok û mêrên bêçek bûn, jiber ku artêşa Tirk tenê karî dest deyne ser hezar parçeyên çek li deverê.

> **Gelo Kurdên Dêrsimê çima dengên xwe nedan BDPê?**

Vêga ku serokwezîrê Tirkiyeyê Erdogan bi çi mebestê got ku amade ye daxwaza lêborînê ji Kurdên Dêrsimê bike, pir nirxandinên cûr bi cûr li ser vê gotinê hatin kirin. Nemaze medyaya Başûrê Kurdistanê her peyvek ji devê Erdogan derkeve, bêyî şirovekirin û rexnekirin jê re li çepikan didin. Partiya Erdogan di hilbijartinên parlamentoyê de li Bakurê Kurdistanê bi giştî û Dêrsimê bi taybetî têk çû, diyar e Kurdên Dêrsimê dengên xwe nedan AKPê lê dengên xwe dane CHPê ku Ataturk damezirandiye û rasterast destê wê di komkujiya Dêrsimê de hebû. Li vir divê Kurd helwestekê bigirin û li bersiva wê pirsê bigerin ka gelo Kurdên Dêrsimê çima dengên xwe nedan BDPê?

Erdogan siyasetvanekî zana û hîlebaz e, bi wî karê ku kir weke Kurd dibêjin bi kevirekî du çûk kuştin, ji aliyekî xapeke siyasî ya baş li CHPê girt û ji aliyekî din anî bîra Kurdên Dêrsimê ku em in yên ku amade ne daxwaza lêborînê bikin, ne ku Kemalîstekî weke Kemal Kiliçdaroglu yê esilkurd ku we dengên xwe dayê.

Gava hemû dokûmentên ku dewleta Tirkiyeyê ji gelek salan ve bi dizî veşartine, bên kifşkirin û çarenivîsa bi hezaran jin û zarokên kurd ku di dema komkujiyê de hatin şandin bo bajarên mezin ên Tirkiyeyê bê eşkerekirin û Dêrsim di aliyê darayî û moralî de bê tawîzkirin, birînên komkujiya Dêrsimê wê çaxê rehet dibin. Ev çi durûtî ye ku hikûmeta Erdogan dest bi komkujiyeke spî li Bakurê Kurdistanê kiriye û bi hezarên Kurdan davêje zindanan û heya vêga heman destûra serdema komkujiya Dêrsimê tê bikaranîn ku li ser bingeha slogana "yek millet, yek ziman û yek welat" Tirkiyeyê birêve dibe ku di pratîkê de ji bilî neteweya tirk, li ti neteweyên din nayê mikurkirin. Lewma ti nirxê gotinên Erdogan nîne, ji bilî çavgirtin û xapandina Kurdên zûbawer.

Lewra hê jî zû ye gotinên Erdogan bên bawerkirin û bila em hinekî bihnefireh bin, pêşiyan jî gotiye ku bi gulekê nabe buhar. Erdogan ku pir xema buhara Erebî dikişîne û dixwaze berhemên wê buharê biçîne ji aliyê Îxwanên hemfikirên xwe, di heman demê de bi rêya girtin û tirsandina Kurdên bakur û êrîşên leşkerî mizgîniya zivistaneke dijwar dide Kurdan.

## Zivistan û xeterî



**Ahmet Dere**

Ji bo piraniya gelên cîhanê zivistan di nava bêdengiyê de derbas dibe, lê belê li Kurdistanê dengê teqîn û reqînê her ku diçe gurtir dibe. Ne tenê li parçeyekê Kurdistanê, vê demê li hemû parçeyên welatê me seqema zivistanê û xeterî hevdu temam dikin.

Li Bakur operasyonên dewleta tirk didomin, wisa diyar e ku AKP heman hewldanên xwe heya demekê dirêj jî dewam dike. Digel zehmetiyên zivistanê û erdheja Wanê, zexta dewleta tirk tûndtir dibe. Qasê ku dixûyê, tenê PKK û BDP di hedefa van zextan de nîn in, herwiha hemû Kurdên azadîxwaz û derdorên demokrat ên tirk bûne hedefa neheqiyên dewletê.

Dema ku ez bi awayekê giştî li rewşa Tirkiyeyê û ya li Bakurê Kurdistanê dinêrim, mixabin xeteriyeke mezin dixûyê. Artêşa tirk hemû derfetên xwe dixebitîne ku derbeyekê mezin li hêza çekdarî ya PKKê bixe. Bêguman ji derveyê têkoşînê û berxwedanê tiştekê din ji PKKê nayê hêvî kirin. Lewre, bi taybetî ji bo Bakurê Kurdistanê, tê xuyan ku wê ev zivistan bi teqîn û reqînê derbas bibe.

Ji mehan vir ve parêzerên Abdullah Ocalan nikarin biçin grava Îmraliyê. Ev nêzîkatiya Wezareta Dadê jî bi helwesta dewletê ve girêdayî ye. Di aliyekê de operasyonên artêşê, di aliyekê de jî operasyonên KCKê ku di heman çarçoveyê de rayedarên BDPê tên girtin, di aliyê din de jî şerê psîkolojîk li dijî Abdullah Ocalan û girseyên gel tê meşandin.

Li hember vê zexta dewleta tirk ji Kurdan zêde dengekî bibandor dernakeve. Çendî BDP li hin deveran mitîngan li dar dixe, ji ber helwesta neyênî ya çapemeniya tirk zêde deng venade. Mixabin di qada navneteweyî de jî bêdengiyek heye, ez bawer im di rojên pêş de wê Yekîtiya Ewropayê li dijî operasyonên KCKê bibe xwedî helwestekê, lê belê vê demê hê tiştek tune.

Ligel rewşa neyênî ya li Bakurê welat, li Rojava jî aramî tune. Pêla Bihara Erebî her rojê zêdetir xwe nêzîkê Sûriyê dike. Eger hêzên Kurdên li Rojava nebin xwedî helwesteke biaqil, mixabin wê Bihara Erebî ji wan re germahiyê neyne. Qasê ku ez dişopînim, helwesta hêzên vî parçeyê Kurdistanê net diyar nebû ye, ev jî min ditirsîne.

Van rojan li Başûrê Kurdistanê jî tevliheviyek heye. Çalakiyên ku li Zaxo qewimîn îşareta hin xeteriyan in. Ne mimkûn e ku mirov di van fesadiyan de li rola dewleta tirk negere. Tê zanîn ku pêşketina vî parçeyê Kurdistanê li xweşiya dewleta tirk naçe û cûrbecûr derdor nerazîbûnên xwe eşkere tînin ziman. Bêguman divê di rewşa Başûr de rola Îranê jî neyê ji bîr kirin.

Welhasil zivistana îsal bi pir xeteriyan ve tije ye. Ji her demê zêdetir ji rayedarên hêzên Kurdan tevgerîneke pir biaqil tê xwestin. Digel hemû neyêniyan, hêvîdar im bihara 2012ê ji bo gelê me bêhna gul û sosinan bîne.

www.arsivakurd.org

# Hinar sihreke xwezayî ya ciwanbûniyê ye

Piraniya fêkiyan ji bo saxlemiya mirov bi sûd in û mirov ji gelek nexweşiyan dûr dikin. Hinar ji bilî ku mirov ji nexweşiyên dil diparêze û bihêz dike, herwiha westiyana derûnî kêm dike û çalakiya seksî ya hevjînan baş dike. Niha lêkoleran sûdeke din ya nû ya hinaran kifş kirine û navê wê kirine îksîra xwezayî ya ciwanan.

Zêdeyî 3 milyon dolar li ser vê lêkolînê hatine xerckirin û derdixe hole ku rojane xwarina hinarên xwezayî kirdara pîrbûna şaneyên DNA yê aram dike.

Lêkolîner herwiha di masûlke û ciger û gurçikan de, di rêjeya gihandina ziyanê bi wan xaneyên ku dikare bibin sedemê derketina kêşeyan de, kêmkirineke berçav dîtine, herwiha bandora derketina nîşanên pîrbûnê li ser çermê rû.

Di encama lêkolînê de, derketiye ku çend sedsal in kifş bûye ku fêdeyên hinaran pir in û vitamînên A-G-D tê de hene, ji bilîz hesin û hinek madeyên din.

- *Çend sûden xwarina hinaran:*
- *Dil xurt dike.*
- *Mirov ji nexweşiyên dil diparêze.*
- *Stresa derûnî kêm dike.*
- *Çalakiya seksî ya hevjînan baş dike.*
- *Mirov ji pîrbûna zû diparêze.*



# Xwarinên Deryaya Spî mirov ji nexweşiyên dil diparêzin



Xwarinên ku ji masî û paqle û şînkatiyan pêk tên û alkol ligel wan nayê xwarin, yan jî alkoleke kêm ligel wan tê xwarin, ji bo kêmkirina mirina bi kirîza dil dibin alîkar.

Li gor lêkolînekê ku encamên wê li bajarê New Yorkê hatin ragihandin, xwarina xwarinên adetî yên wek masî, zeyta zeytûnan, fêkî û şînkatî û xwarinên giyayî yên wan welatên ku li ser Deryaya Spî ya navend in, xetera nexweşketina boriyên xwînê kêm dike û dil ji weke kirîzê diparêze. Herwiha wan kesan ji qelewbûnê jî dûr dike. Her weke hatiye zanîn ku Japon ku xwarinên deryayî pir tên dixwin, kêmtirîn rêjeya qelewiyê di nav vî xelkî de heye, li Siudiyê û Amerîkayê jî zêdetirîn rêjeya qelewiyê heye.

Ew cûreyê xwarinan ne tenê xwarinên Deryay Spî ne, lê mirov dikar navên wan bike xwarinên saxlem, jiber ku li gor xwarinên şor û bi dohn ên welatên din pir saxlem in. Herwiha li gor lêkolîneke zanîngeha Miami li Amerîkayê ku li ser 2500 kesan hatiye kirin, ji pêkhateyên Amerîkî, Îspanî û Efrîqî, pêwendiyeke mezin di navbera xwarinên ne saxlem û nexweşiyên dil de, heye.

Di nav xwarinên deryayî de, weke richal û omega3 çend madeyên sûdmend hene ku dikarin bandorê li ser saxlemiya dil bikin, her weke ku piraniya lêkolînan tekez kirin ku ew xwarinên ku goştê sor bi awayekî zêde di wan de heye, zerermend in.

**İlan**

**PÊŞANGEHA SÊRAMÎKÊ LI BRUKSEL YA HUNERMEND**

**RUNAK OSMAN MUHAMAD**

**Yekşem** (11. 12. 2011)
**Demjmêr:**14.00
(Vekirin û Koktêl - rêsêpsyon)
**Duşem** (12. 12. 2011)
**Demjmêr:**
10.00-16.00
(Berdewambûna Pêşangeh)

**Navnîşan:**
Buroya Kurdî ya Pêwendî û Agahdariyê
Quai aux Pierres de Taille (Adruinkaai) 11
1000 Brussels
Belgium

*http://www.kurdishbureau.be/*



**Mezopotamya**
**Weqfa Şandina Cenazeyan**




Mezopotamya canazeyên we dişîne herçar beşên Kurdistanê

Di rojên dijwar de em bi we re ne

Tel.: 02331 - 47 33 886
Mobil: 0178 - 18 56 970
0172 - 27 24 163




**Navnîşan:** Frankstr. 6 • 58135 Hagen/Almanya
**E-Mail:** sigortaci-alp@hotmail.de
www.mezopotamya-cenazefonu.com

## Xaçepirs

**Çeperast:** 1- Hejmarek – 30 roj, 4 hefte. 2- Nîşan, alamet, firêze – Xwedayek Sumeran – Melkemot, ruhstên. 3- Di dema cotkirinê de dikeve stuyê ga, xeleka koletîyê (berepaş) – Berqef, zianar – Qelb, lebatek laşê mirov – Baş, rind, çak. 4- Li Iraq û Sûrîyê partîyek şovenîst – Sextekar, bêbext (berepaş). 5- Mirov, beşer – Wextê, çaxê, wê kêlîkê. 6- Xweşikî, bedewî, xortanî (berepaş). 7- Bi Erebî "kurê min" – Bi Erebî "na" (berepaş) – Pê por tê rastkiri (berepaş). 8- Qebûlnekirin, redkirin, nexêr – Alîkarî, destek. 9- Avakir, serperest, hîmkar. 10- Pêxemberek – Xwedayek Sumeran – Belê, rast e, temam.

**Serejêr**: 1- Payetî, dilxweşî, bextewarî. 2- Navekî jinan (berepaş) – Partîya Saddam û Beşar Esed. 3- Pêşkêşî, bi naskirin dan – Nehat, li paş e, nayê. 4- Zik, çerm, eyar – Di katjimêrê de dema herî kurt, ji 60/1 ê seetê. 5- Kevir, pêş, fîşek – Nexêr, nabe – Cîhgir û alîkarê muxtar, serbest. 6- Deng, awaz – Wisa, wilo, wanîko. 7- Tembûr, aletên muzîkê – Nîvkelandî, nîvxav (bi taybet ji bo hêkan tê gotin). 8- Navekî zilaman (berepaş) – Bi Erebî "ez". 9- Dermanek bêhişkirinê, ruhê loqman. 10- Redkirin, nexwestin – Çavsor, provokator, kesê êrîşê dike (berepaş). 11- Xweda, reb. 12- Ne xweşik, fehş, ne ciwan (berepaş). 13- Ala piçûk, nîşane. 14- Notayek muzîkê. 15- Paşnavê serokê KADEP ê, Şerafettîn ...... 16- Îdare dike, ne baş û ne xirab.



**Bersivên hejmara 124**



www.arsivakurd.org

Rojbûn an jî şahiya te ye û
tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî?
Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

# Xewna Nûvîn... wênekêşî



Navê min Nûvîn e, ez li Fînlandê hatime dinê. Lê ez dizanim ku ez xelkê Kurdistanê me, ji ber wê yekê ez gelek ji Kurdistanê hez dikim. Ez tevlî malbata xwe du caran çûme Kurdistanê. Ez dixwazim herdem biçim wê derê, tevlî zarokan li wir biçim baxçeyê zarokan. Ez 22.05.2007 li welatê Fînlandê hatime dinê û niha diçim baxçeyê zarokan. Li baxçeyê zarokan ez tevlî hevalên xwe dileyîzim, wêneyan çêdikim. Heval û mamosteyên min gelek ji min hez dikin, ez jî ji wan re wêneyên xweşik çêdikim, ji ber ku ez wêneyên baş çêdikim. Dema ez mezin bûm, dixwazim bibim wênekêşeke baş.






Di demsala Payîzê de mirov gelek caran rastî daristanên bi mij tê. Gava ku mij çêdibe, piçekî tirs û xof jî bi mirovan digire. Lê mij çawa çêdibe?

Dema ku hewa şil be û dinya jî sar be, dilopên pir pir biçûk yên avê digihîjin hev, wê demê mij çêdibe. Ji ber ku ew dilop gelek biçûk û sivik in, loma dilop nakevin erdê û li ser rûyê erdê dibin wek ewrekî.

Lê dema ku tîrêjên rojê zêde dibin, ew dilopên avê hêdî hêdî germ dibin û dibin hilm û mij jî winda dibe.

## Hûn jî dikarin kûsî çêbikin



- Qalikê gûzê di nîvê de bikin du perçe û bi rengê kesk birengînin.
- Qalikên rengkirî li ser perçeyekî kartonê bizeliqînin.
- Li ser kartonê serî, pê û destên kûsî wêne bikin.
- Weke ku hatî wêne kirin, kûsî li ser kartonê bibire.

## Ronî

Mamoste ji şagirtên xwe pirsî: Kî ji we dizane li ser nexşeyê Amerikayê nîşan bide? Ronî destê xwe bilind kir, çû cem mamoste û li ser globûsê Amerîka nîşan da.
Carek din mamoste pirsî: Hûn dizanin kê Amerîka keşf kiriye?
Hemû şagirtan bi dengek bilind gotin: Mamoste Ronî ew keşf kiriye.




Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafîk

## Peyvên veşartî bibîne

| | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|
| F | I | L | L | I | Ç | Q |
| W | U | H | R | M | E | A |
| O | G | E | R | M | L | M |
| Û | R | M | I | Y | E | I |
| Q | V | R | I | Y | N | Ş |
| A | M | Î | H | I | G | L |
| R | E | N | G | Î | N | O |

Germ
Çeleng
Rengîn
Hemrîn
Urmiye
Qamişlo

## LABYRÎNT



Evîn di nav labyrîntê de winda bûye. Kîjan rê rêya derketina ji labyrîntê ye (A-H)?